Bas Nûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL Hejmar:20 13 - 19 Îlon 2014 basnews.com

## Murat Yapıştıran

Jiyan helbestek bêdeng e

R16



# Şerê bo aştiya cîhanê



Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, bi mebesta 53 saliya Şoreşa Îlonê peyamek pêşkêşî gelê Kurdistanê kir. Barzanî di peyama xwe de diyar kir ku 'Pêşmerge wek nûnerê azadîxwaz û aştîxwazên cîhanê li dij terorîstan şer dike' û ji pêşmerge û hemû kurdên ku li dij DAIŞ'ê şer dikin xwest ku 'li hember dijminên Kurdistanê bi vîna Şoreşa Îlonê şer bikin.'

Barzanî di peyama xwe de anî ziman ku gelê kurd di nava şerekî ewqas girîng de ye ku dikare çarenûsa Kurdistanê saz bike. Gelê Kurdistanê bi tu awayî rê nade ku 'teror' û dagirkerî vîna Kurdistanê têk bibe û got: "Pêwîst e, em bi dirûşmeya 'An Kurdistan an neman' li hember terorîst, şerxwaz û dagîrkeran şer bikin û tevahiya xaka Kurdistanê paqij bikin."

Bo Pêşmerge û hêzên ku li dijî DAIŞ'ê şer dikin jî Barzanî spasiyên xwe anîn ziman û wiha domkir: "Ciyê serbilindiyê ye ku di navbera partî û aliyên siyasî yên Kurdistanî de yekdengî û yekrêzî heye û hêvî ji xwedê, wê gelê kurd bi serkeve. Tu rûdaw û karesatek nikare bibe sedema ku kurd dev ji maf û daxwazên xwe yên rewa û mafên xwe yên netewî berdin."



## Ji Hewlêrê bo Îbadi 3 meh

Piştî ku hikûmeta nû ya Haydar Îbadî di parlemanê de piştgiriya rewabûnê stend, nîqaşên li ser serkeftina wê jî dest pê kirin. Rêvebiriya Herêma Kurdistanê(RHK) ji bo daxwazên wê bi cîh bîne sê meh qewl da hikûmeta Îbadî. Kurd ji hejmara wezaretên ku ketiye destê wan ne razî ne. Her wiha Haydar Îbadî heta niha, di derbarê daxwazên aliyê kurd yên wek; pereyên mûşeyê pêşmergeyan û xala 140'an a destûra Iraqê de neketiye nav hewldanan. Rûpel 02

## Li dibistanan dema kurdî

Li ser banga Kurdî-Der, Eğitim Sen, KCD, Şaredariyên DBP'ê û saziyên civakî, di 15'ê Îlonê de wê li Amed, Cizîr û Geverê perwerdehiya kurdî destpêbike. Heman sazî herwiha ji malbatan dixwazin ku bi armanca protestokirina perwerdeya fermî, zarokên xwe ji bo hefteyekî neşînin dibistanên dewletê. Rûpel 12

## Tifaqa li dijî kurdan derizî

İsmail Beşikçi bi tecrûbe û bi zanebûna xwe ya sosyolojîk ya di derbarê Rojhilata Navîn de bi berfirehî bersiv dan pirsên me. Beşikçi got, tifaqa ku dijberiya kurdan dike êdî derizî ye û bo pêşketina kurd û Kurdistanê ew hevbendî nikare bibe asteng.



Li gor Beşikçi serjimara kurdan bi zanebûn nayê kirin da ku nebin endamê malbata neteweyên cîhanê. Rûpel 04-05

## Şîrîna Rojhilat: Qesrî Şîrîn

Erdnîgara Qesrî Şîrîn li Kurdistanê yek ji deverên gelek balkêş e. Erdîma bajêr ku dûrî rêzeçiyeyên Zagrosan dikeve, bejî û berî ye. Ji ber vê yekê havînan gelek germ e. Li derdora bajêr hin girên nizm yên sîlsîleyên Zagrosan hene. Rûpel 08-09

## Warên elewiyan wêran dibin

Li Semsûrê, bi taybetî li herêma ku gundên elewî lê niştecîn in, gellek bendavên nû tên çêkirin û gelê heremê mexdûr dibe. Di nava 8 bendavan 6 ji wan li ber gundên elewiyan tên girêdan û bi dehan gund di bin avê de dimînin. Ji ber ku araziyên derdora gundan malê xezîneyê ye û cîhek ji wan re nayê nîşandan, gundî neçar in ku ji heremê barbikin. Rûpel 10



## Kurd û çiya bi hevre distrên

Gerok û nivîskarên rojavayî W.F.A. Zimmermann, August Haxthausen, F. Martin Bodenstedt, C.W. Wutzer û çendên din jî di sedsala 19'an de di derbarê dengbêj û kilamên kurdî de nêrînên gelek nêzikî yên Montpereux û Wagner nivîsandine. Ew destnîşan dikin ku dengên hunermendên kurd perwerdekirî ne, dengên tîk û xurt zêdetir tên hezkirin û dengbêj kilam û destanên epîk yên dîrokî, mêrxasî û evînî distirên. Rûpel 14

Evdila Peşêw

**Sengerekî dijî bırakujan** R15

Reşbelek

**Kurdîzade Ehmed Ramiz** R06

## Hewlêrê sê meh dan Îbadî

# Li Iraqê pêvajoya bi guman

Piştî ku hikûmeta nû ya Haydar Îbadî di parlemanê de piştgiriya rewabûnê stend, nîqaşên li ser serkeftina wê jî dest pê kirin. Rêvebiriya Herêma Kurdistanê(RHK) ji bo daxwazên wê bi cîh bîne sê meh qewl da hikûmeta Îbadî. Kurd ji hejmara wezaretên ku ketiye destê wan ne razî ne. Her wiha Haydar Îbadî heta niha, di derbarê daxwazên aliyê kurd yên wek; pereyên mûşeyê pêşmergeyan û xala 140'an a destûra Iraqê de neketiye nav hewldanan.

Serokwezîrê Berê Nurî Malîkî, Serokê Berê yê Parlemanê Usame Nuceyfî û Serokê Bloka Laîkparêzan Îyad Allavî bûn alîkarên Serokkomar.

Serokwezîrê nû Îbadî jî wek Malîkî postê wezaretên Parastin û Karê Hûndir vala hişt û karûbarên van wezaretan bi wekaletê bi rê ve dibe.

Di lijneya wezîrên hikûmeta Îbadî de, li gor sala 2010'an kurdan kêmtir wezaret bi dest xistin. Ji lîsta kurdan, Wezîrê Berê yê Derve Hişyar Zebarî û ji lîsta sunneyan Salih Mûtlaq bûne Alîkarê Serokwezîr. Serokwezîrê Berê yê şia İbrahim Caferî bû Wezîrê Karê Derve. Wezirtiya Wezareta Petrolê ku kurdan hêvî dikirin bikeve destê wan dane Alîkarê Serokwezîrê Berê yê şia Adil Abdulmehdî.

Di daxwiyaniya Îbadî ya di derbarê bernama hikûmetê de, reformên rêveberiyan, nûkirina arteşê û zêdekirina rayeyên desthilatên eyaletan hene. Hikûmeta nû ya Îbadî di parlemanê de ji 280 dengî 177 dengên erênî stend û hilatiya we rewa kir.

### Endamên hikûmeta nû

Nav û erkên kesen ku di hikûmeta nû ya Îbadî de cih girtine ev in:

Serokwezîr: Heydar Îbadî / Alîkarên Serokwezîr: Beha Aracî, Salih Mûtlaq, Hişyar Zebarî / Wezîrê Derve: Îbrahîm Caferî / Wezîrê Hundur: Hadî Amrî / Wezîrê Petrolê: Adil Abdulmehdî / Wezîrê Xwendina Bilind: Huseyîn Şehristanî / Wezîrê Çavkaniyên Mirovî: Muhammed El-Sudanî / Wezîrê Rêveberiya Herêmî: Tariq Şekanî / Wezîrê Veguhestinê: Bekir Cebir / Wezîrê Ciwan û Werzîşê: Abdulhuseyn Abtan / Wezîrê Tenduristiyê: Adile Hamûd / Wezîrê Çavkaniyên Sirûştî: Cevad El-Şehilî

### Kurdan sê meh qewl da Îbadî

Serokwezîrê nû Îbadî beriya dengdayîna rewakirina hikûmeta xwe, soza çareserkirina pirsgirêkên di navbera Bexda û Hewlêrê de da kurdan û angaşt ku ewê DAİŞê têk bibin. Balkêşiyeke din jî ew bû ku ji dema Saddam Huseyn vir ve postê Wezareta Derve di destê kurdan de bû û yekem car e ku ev rewş guherî û ev wezaret ji dest kurdan derket.

Partiyên siyasî yên kurdan hefta borî li Silêmaniyê, di civîna xwe ya asayî de, diyar kiribûn ku ewê piştgiriyê bidine hikûmeta Îbadî. Wezîrê Karê Derve yê Berê Hişyar Zebarî di daxwiyaniya xwe ya di derbarê tevlîbûna hikûmeta Îbadî de dabû zanîn ku ji bo pirsgirêkên petrolê û yên din çareser bike, wan sê meh qewl dane hikûmeta Îbadî. Parlementerê kurd ê li Bexdayê Ala Talabanî jî diyar kir ku ev qewlê sê mehan, ji bo ezmûnkirina polîtîkayên vê hikûmeta nû hatiye dayîn. Talabanî got: "Ger ku di nava sê mehan de pirsgirêkên herêmên bi nîqaş, butçe û firotina petrolê çareser nebin ewê ji hikûmetê veqetin.

Kurd di parlementoya Iraqê de xwediyê 62 kursiyan in û beriya hilbijartina rewakirinê ya hikûmeta Îbadî, şertên xwe yên ji bo tevlîbûna hikûmeta wî diyar kiribûn. Hewlêr dixwaze ku ji % 17 para butçeyêya Herêma Kurdistan, ku 8 mehin nayê dayîn bê dayîn, alîkariya peşmerge bê kirin, astengiyên li pêş firotina petrola Kurdistanê bêne rakirin û di pêvajoya nû de Iraq li gor yasayên destûrê bê birêvebirin. Lê beriya ku hikûmeta nû nehatibû avakirin; Bexda cardin giliyên xwe yên di derbarê keştiya petrolê ya Kurdistanê de ji wezîfedarê Eyaleta Teksasê re kir. Îtîraza wan bû sedemê hin şik û gumanan.

### Zebarî: DYA garantî da

Serokê Lijneya Koalîayona Kurdistanê Hoşyar Zebarî yê ku di hikûmeta nû de jî cîh digre, da zanîn ku DYA garantî daye ku wê hikûmeta nû ji yên berê baştir be.

Zebarî piştî civîna li Silêmaniyê got: "Ger ku Bexda di qewlê sê mehan de di derbarê pirsgirêkên navbera Bexda û Hewlêrê de gavan nehavêje ewê biryara xwe bidin û nîyeta xwe aşkere bikin."

Di civîna partiyên siyasî yên Kurdistanê de ku li Silêmaniyê li Avahiya Navendî ya Tevgera Goran pêk hat hin berpirsên DYA û yên NY jî beşdar bûbûn.

Alîkarê Rawêjkarê Wezareta Karê Derve ya DYA yê ji İran û îraqê berpirsiyar Brett McGurk û berpirsiyarên lijneya NY jî tevlê civîna partiyên siyasî yê kurdan bûn.

Ji koma DYA'yî Brett McGurk piştî civîna ku sê saetan dom kir, ji rojnamevanan re da xuya kirin ku wan bi dostê xwe yê Iraqê re niqaşan kirine di vê civîna partiyên kurd de bi kurdan re biryarên grîng stendine. McGurt di axaftina xwe de ji hikûmeta nû xwest ku pêdiviyên hemû aliyan bi cih bîne û rêbazên wisa pêk bîne ku her aliyên siyasî, etnîkî û olî yên Iraqê beşdarî vê pêvajoyê bikin. McGurt got: "Em bawer in ku hikûmeta nû van daxwaziyan pêk bîne û bi serkeftî bibe.

### Obama balê kişand ser daxwazên kurdan

Piştî hilbijartina rewakirina hikûmeta Îbadî bi encam bû, Serokê DYA'yê Barack Obama Serokwezîrê nû yê Iraqê Haydar Îbadî pîroz kir û got ku "Em bi hêvî ne ku hikûmeta nû daxwaziyên kurdan bi cih bîne."





## Barzanî: Divê Îbadî daxwazên kurdan piştguh neke

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, Serokwezîrê nû yê Iraqê Heydar Îbadî ji ber wezîfeya wî ya nû pîroz kir.

Li gor daxuyaniya nivîskî ya Serokatiya Herêma Kurdistanê; Barzanî bi telefonê ji Îbadî re gotiye ku: "Ji bo dawî lê anîna krîza siyasî û ewlekariyê divê piştgiriya hemû aliyên Iraqê bê kirin."

Di daxwiyaniyê de tê gotin ku aliyên kurd û şia nêzîkî hev difikirin û hatiye xwestin ku şaşiyên ku hikûmeta Malîkî kiriye neyên dûbarekirin, xwestekên kurdan li ber çavan bêne girtin û tekoşîna li dij terorê bê berz kirin.



# Bo kurdan yekta rê yekîtî ye

**Celil Cevher**

Piştî ku li Rojava 3 kanton hatin avakirin gelê wê derê jî bi rêveberî û modeleke nû re rû bi rû ma. Tevî ku ji nû ve avakirinek didome, êrîşên DAIŞ'ê jî bi talûkeya têk birina destkeftiyên kurdan ket nava tevdanan. Her çiqas hin hêzên DAIŞ'ê piştî êrîşên li hemberî Başûr derbasî wir bibûn û şerê li Rojava hinekî sist bûbe jî, ew nayê wateya aramî û asayiyê. Li Rojava hîn jî gelek cîh di destê DAIŞ'ê de ne û xeterî didome. Hevserokê Parlementoya Qanûnsaziyê ya Kantona Kobanê Fewza Abdî û Endamê Pîlotbûroya Partiya Kurd li Sûriyê (Yekîtî) Fuad Elîko rewşa dawî ya Rojava ji BasNûçeyê re nirxandin. Herdû sîyasetmedaran jî bal kişand ser dorpêça DAIŞ'ê ya Rojava û wek çareya tekane yekitiya kurdan nîşan dan.



Fewza Abdî

### Tirkiye sînor girtin

Fewza Abdî got ku Kobanê hîn jî di bin dorpêçê de ye û ji bakûr jî Tirkiye sînor girtine û da zanîn ku DAIŞ'ê av û ceyrana Kobanê birî ye. Abdî got ku: "Kobanê ji berê ve di bin dorpêçê de ye û ev dorpêç hîn jî berdewam dike. Li Bakûr jî dorpêça Tirkiyê heye û pêşî li alîkariyê digre. Gelê Kobanê di jiyana rojane de jî astengiyan dijî. Di dema rejîmê de ceyrana me ji Reqqayê, ava me jî ji Cerablûsê dihat. Piştî ku DAİŞ'ê ew der girtin av û ceyrana me jî hat birîn. Di warê aboriyê de jî em di bin dorpêçê de ne. Ger ku yek ji bo arvan an jî tiştekî din di nava xaka di destê DAIŞ'ê re derbas be serê wî jêdikin. Di demên borî de li Kobanê 4 enî hebû lê niha bûye 7 enî û berxwedana li hemberî wan didome. Piştî têkçûna wan ya meha borî rewş hinekî aram e û êrîş kêm bûne. Êşa hemû kurdan yek e. Hemû kurd yekît iyê dixwazin. Hemû kurd Kongreya netewî dixwazin. Divê hemû hêlên kurdan nakokiyên xwe dêynin aliyekî û bi hev re bimeşin êdi. Ku yekîtî û parastina hevpar saz nebe rewş ber bi başbûnê ve naçe."

### Rejîma Baas alîkariya DAİŞ'ê dike

Endamê Pîlotbûroya Partiya Kurd li Sûriyê (Yekîtî) Fuad Elîko jî di derbarê rewşa dawî ya Rojava de axivî û da zanîn ku talûkeya DAIŞ'ê bi dawî nebûye û herwekî din wî bal kişand ser yekitiya kurdan û anî ziman ku Rejîma Baas bo êrîşkirina li ser kurdan alikariya DAIŞ'ê dike û di êrîşa li hemberî Kobanê de jî pêçiya Baas heye û ew dixwazin ku bi vê reye PYD'ê bikşînin aliyê xwe.



Fuad Elîko

Elîko diyarkir ku rêya azadiya kurdan di nav yekîtiyê de derbas dibe û wiha pê de çû, "Rejîm dixwaze PYD'ê bikşîne hêla xwe. Ji hêleke de alîkariya DAIŞ'ê dike û li aliyekî jî têkiliyên xwe bi PYD'ê re zexm dike. PYD jî bi piranî ji PKK'yiyan pêk tê. PKK îro bi Tirkiyê re ketiye guftogoyê. Ku ev pêvajo pêş de here PKK ji PYD'ê re bibêje 'ji xeta Îran û Sûriyê derkeve' Ji ber ku nêzikahiya Tirkiyê ji ya Îran û Sûriyê cihê ye. Êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Şengal û Maxmûrê bi alîkariya hin dewletan qewimî. Bi ya min bi teybetî bandora Îranê hebû. Îran tu caran bihêzbûna kurdan naxwaze, bi teybetî jî ya Başûrê Kurdistanê. Ev dewlet dixwaze kurd bêhêz bimînin û yekîtiya wan pêk neyê. Lê mesele di yekîtiya kurdan de ye. Heke kurd yekbin hemû astengiyên wan ji holê radibin."

# YPG'ê û Artêşa Azad li hev kirin



Yekîneyên Parastina Gel YPG û hemû hêzên Artêşa Azad û çekdarên muxalefeta Sûriyeyê ku li herêma Firatê li hember DAIŞ'ê şer dikin Navenda Çalakiya Hevbeş di bin navê Burkan El-Firat de îlan kirin. Armanc ji odeyê yekkirin û yekgirtina refên hêzên muxalefetê li hember DAIŞ'ê heta ku wê ji herêma Firatê derxin.

Di daxuyaniya ku ji aliyê fermandarekî Artêşa Azad ve di dema îlankirinê de hat xwendin de wiha hat gotin: "Em tabûr û tûgayên Lîwaa El-Tewhîd beşê aliyê rojhilat, Lîwaa Siwar El-Reqa, tabûrên Şems El-Şemal ên girêdayî Togayên Fecir El-Huriyê, Yekîneyên Parastina Gel, Yekîneyên Parastina Jin, Seraya Cerablus, Lîwaa Cebhet El-Ekrad, Siwar Umunaa El-Reqa, Artêşa El-Qesas, Lîwaa El-Cîhad Fî Sebîlillah avakirina navenda çalakiya hevbeş a bi navê Burkan El-Firat (Arpija Firatê) ji bo li hember çeteyên El-Bexdadî (DAIŞ) bisekirin, îlan dikin."

Li ser vê yekê di daxuyaniyê de ev daxwazî hatin rêzkirin:

**1-** Hemû endamên ku hatin xapandin û tevlî DAIŞ'ê bûn bila rêxistinê terk bikin.

**2-** Bila civaka navneteweyî li hemberî rêxistina DAIŞ'ê ya 'terorîst' erka xwe bicih bîne.

**3-** Bila hemû aliyên li hember DAIŞ'ê alîkariya madî û manewî pêşkêşî navenda hevbeş bikin.

## Mesrûr Barzanî:

# Me ji DYA'yê çekên giran xwestin

Şêwirmendê Civata Asayîşa Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî, bi rêya televizyona Amerîkî CBS News'ê daxwaz kir ku operasyonên hewayî yên frokeyên DYA'yê berfirehtir bibin. Mesrûr Barzanî, bi rêya televizyonê da zanîn ku operasyonên hewayî yên frokeyên DYA bandoreke erênî li şerê dij DAIŞ'ê kirine û ji ber vê yekê spasiyên Pêşmerge arasteyî Amerîka'yê kir.

Mesrûr Barzanî, di derbarê alîkariyên çekan de jî da zanîn ku alîkariyên çekan ên ji bo Pêşmerge pêk hatine lê belê ji bo Pêşmerge dikaribe li dij DAIŞ'ê şerekî berztir bimeşîne, pêdivî bi çekên giran heye û daxwaz kir ku DYA alîkariya çekên giran li Pêşmerge bike. Barzanî wiha got: Operasyonên asmanî yê DYA'yê bandoreke pir erênî li hêzên Pêşmerge kirî ye û ji ber vê hewldanê Pêşmerge sipasiya DYA'yê dike. Lê em di wê baweriyê de ne ku ew operasyon ne bes in."

Di derbarê têkbirina DAIŞ'ê de jî Mesrûr Barzanî diyar kir ku Çekdarên DAIŞ'ê hê jî li Sûriye'yê hewl didin ku pişta xwe rast bikin û li bajarên mîna Mûsil û Tilefer hê jî cihê metirsiyê ne. Mesrûr Barzanî xwest ku serkirda û sîstema DAIŞ'ê li her derî bibin armancên operasyonan. Barzanî wiha axivî: "Em hêviya zêdetir hevkariyên çekî û siyasî ji Amerîkayê dikin. Niha li Kurdistan navendeke hevbeş a Pêşmerge û DYA heye. Me daxwaz ji DYA kiriye ku hevkariya hêzên Pêşmerge bike û çekên giran bide pêşmerge."



## İsmail Beşikçi:

# Tifaqa li dijî kurdan derizî

Kalê Badî

Di demeke de ku Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) mijara serxwebûnê xistibû rojeva xwe û herwiha di vê rêyê de amadekariyên referandûmê dihatin kirin, rêxistina DAIŞ'ê li hember hin deverên Başûrê Kurdistanê êriş pêkanîn. Hin rewşenbîr û siyasetmedarên Kurd vê êrîşa hovane weke nerazîbûna nîjadperestiya ereb ya li hember projeya serxwebûnê ya Kurdan şîrove dikin. Bi armanca ku em vê mijarê ji pir aliyan ve bi berfirehî bikolin me bi Civaknas İsmail Beşikçi re hevpeyvînek çêkir. Me xwest em herwiha fikra Beşikçi ya di derbarê 'pêvajoya çareseriyê' ya li Bakurê Kurdistanê de jî hîn bibin. Beşikçi heta niha ji ber xebatên xwe yên lêkolînî û zanistî ku piraniya wan behsa maf û hebûna kurdan dike, gelek berdêlên giran dane, bi salan di zindanê de maye. İsmail Beşikçi bi tecrûbe û bi zanebûna xwe ya sosyolojik ya di derbarê Rojhilata Navîn de bi berfirehî bersiv dan pirsên me. Beşikçi anî ziman ku li Rojhilata Navî tifaqa ku dijberiya kurdan dike êdî derizî ye û bo pêşketina kurd û Kurdistanê ew tifaq nikare astengiyan derxe.



**Li gor Beşikçi bi zanebûn serjimara kurdan nayê kirin da ku nebin endamê malbata neteweyên cîhanê.**

***DAIŞ'ê pêşî Misûl dagir kir, dûre jî berê xwe da Şengal û hin deverên din ên Başûrê Kurdistanê. Cenabê we meselê çawa şîrove dike? Di encama vê pêvajoyê de, wendahî yan jî destkeftiyên kurdan wê çi bin?***

Di encama dagirkirina Misûlê ya ji aliyê DAIŞ'ê ve, maddeya 140 ya destûra bingehîn ya Iraqê defakto pêk hat. Kurdan herêmên ku ji Kurdistanê hatibûn veqetandin xistin deste xwe. Lê belê êrîşa DAIŞ'ê ya ser Şengalê, mijareke kûr e ku divê meriv bi berfirehî li ser bisekine. Ev êrîşa DAIŞ'ê di demeke ku serxwebûna Kurdistanê dihat guftûgokirin pêk hat. Ev tê wê wateyê ku hêzên dewletên ereb, yên wek Erebistana Siûdî, Qatar û her wiha Tirkiye û partiyên Baas ên li Iraqê, Sûriye û Ûrdûn û tevgerên bîrdozî yên Nasirîst piştevaniya DAIŞ'ê dikin. Ew naxwazin ku Kurdistan bigîhîje serxwebûnê. Ev êrîşa DAIŞ'ê ji Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) û Pêşmerge re bûye weke neynik. Bû wesîle ku rastiya xwe bibînin. Xuya ye Pêşmerge ne perwerdekirî ye û herema Kurdistanê ji êrîşên bi vî rengî re ne amade ye. Lê belê, li gel hemû van geşedanan jî divê RHK bi rêbazên dîplomatîk, pêvajoya serxwebûnê bidomîne. Divê kurd pêvajoya serxwebûnê bi Hikûmeta Iraqê re jî nîqaş bikin. Divê RHK, bêyî Bexda'yê frotina petrol û gazê bidomîne. Divê ji maddeya 140 ya ku îro wek defakto ketiye piratikê tavîz neyên dayîn. Divê rêyên ku dikaribin çekên giran bi dest bixin bibîn in. Divê Pêşmerge wê sistiyê ji ser xwe bihavêje û bibe hêzeke çalak û kêrhatî. Divê li ser drûşma "Bratiya kurd û ereb" bi dewlemendiyeke kirûyî hûr bibin û vê yekê bi hendazeyî binirxînin. Divê bê zanîn ku ev drûşime qet sûdê li doza kurdan nake.

Şerê li dij DAIŞ'ê dikare Pêşmerge xurt û bigeşîne. Rêvebiriya Herema Kurdistanê jî divê li hember êrîşên bi vî rengî tim şiyar be.

***Ev pêvajoya ku bi DAIŞ'ê destpê kir wê hevgirtina navbera hêzên kurd çiqas xurt bike yan jî berovajiyê hêviyên kurdan, gelo wê ev pengav nakokiyên navxweyî yên kurdan tûjtir bike?***

Çawa dibe bila bibe, hevgirtinên kurdan yên ku serxwebûna Kurdistanê naxin rojeva xwe bê wate ne. Dibe ku li dijî DAIŞ'ê di hin qadan de hevkarî bêne kirin, lê ev tiştên demborî ne û bi konjokturê ve girêdayî ne.

Pirsgirêka bingehîn ev e: Yekîtiya ku serxwebûna Kurdistanê dixe rojeva xwe. Ji bo vê yekê jî hişmendiyeke bala ya kurd û Kurdistanê divê. Lê belê, di kurdan de ev hişmendî lawaz e. Ne pêkhateyên ku tevahiya Kurdistanê dihundurîne, lê pêkhate û polîtîkayên perçeyî û rêxistinî derdixin pêş.

Pirsa bingehîn ya ku divê baş bê têgihîştin ev e: Ger ku kurd bibin yek ji neferên yeksan ên malbata neteweyên dinyayê ev pir grîng e. Divê ev feraset bibe hêmana tekoşînê. Lê belê, kurd û Kurdistan ne neferek malbata neteweyên dinyayê ne. Di dezgeh û yekîtiyên navneteweyî yên wek; Neteweyên Yekgirtî, Konferansa Îslamê û Konseya Ewropa de navê kurdan tenê bi "teror"ê tê bi lêvkirin. Di mijarên wek; Dad, heq û hiqûqê de navê kurd û Kurdistanê nayê ziman. Ev nîzama dinyayê ya dijî kurd û Kurdistanê çawa çê bû?

Wek nimûne: Kurd û Kurdistan, çima beşdarî olîmpiyatên ku ji çar salan carekî têne lidarxistin nabe. Dewletên ku serjimara wan 10 – 15 hezar in jî dikarin beşdar bibin, lê li Rojhilata Nêzîk û Rojhilata Navîn ji 50 milyonî zêdetir kurd hene, ew çima beşdar nabin? Gelo ku kurd bibin yek ji neferên malbata neteweyên dinyayê, ev tişt ne grîng e? 210 dewlet beşdarî Olîmpiyata Londonê ya 2012'an bûn e. Herî kêm 40 ji van dewletan wek serjimara wan ji milyonekî kêmtir in.

Dema tê gotin ku serjimara kurdan a Rojhilata Nêzîk û Rojhilata Navîn 40 an jî 50 milyon e, li dij derdikevin. Lê ev mijareke grîng e û divê baş bê nirxandin. Çima li Tirkiye, Iraq, Îran, Sûriye û li Kafkasya serjimartineke tekûz a kurdan nayê kirin? Sedema bingehîn ya nejimartina kurdan ev e; metirsiya pirbûna kurdan. Dewletên ku kurd û Kurdistan pervekirine, ji bo bi zanyariyeke wiha fermî re rû bi rû nemînin serjimartina kurdan nakin. Ji ber vê yekê, tê gotin ku li Rojhilata Nêzîk û Rojhelata Navîn 40 an jî 50 milyon kurd hene. Li gor min, li Rojhilata Nêzîk û Rojhilata Navîn, serjimara giştî ya kurdan ji 50 milyonî zêdetir e.

Netewe û xaka kurd û Kurdistanê, hatine dabeşkirin, perçekirin û parvekirin. Ev yek di salên 1920'an de di heyama Neteweyên Yekgirtî de pek hatiye. Salên 1920'an salên '3. dabeşkirina kurd û Kurdistan' in. Ev tê wê wateyê ku di kurdan de qelsiyeke pir grîng heye. Xêrnexwazên kurd û Kurdistanê ji vê qelsiya kurdan sûd werdigirin û bi vî awayî ew dabeş dikin, parçe dikin û parve dikin. Wê gavê, divê ev qelsî baş bê têgihîştin û ji holê bê rakirin.

***Divê bi baldarî li ser pirsa; 'Çima kurd û Kurdistan hatin dabeşkirin, parçekirin û***



## DAIŞ çawa peyda bû?

***DAIŞ çawa pêk hat an jî hate pêkanîn?***

Li Rojhelata Nêzîk û Rojhelata Navîn pêvajoyeke hilweşînê didome. 1916 û Pergala Sykes-Picot ya ku piştî vê salê tê sazkirin û Pergala Rojhelata Nêzîk û Rojhelata Navîn, ya ku ji alî Neteweyên Yekgirtî ve di 1920'an de tê sazkirin derizî ye. Di 1920'an de, dewletên emperyal ên wek Brîtanya ya Mezin û Frensa di sazbûn û domandina vê statukoyê de roleke mezin leyîstin. Lê belê xuya ye ku êdî komên olî û etnîkî û daxwazên wan, siberoja herêmê diyar dikin. Kurd û Kurdistan jî di wê heyama ku min li jor qala wê kir de hatine dabeşkirin, perçekirin û parvekirin.

Bi nêrîna min, dîroka Rojhelata Nêzîk û



Rojhelata Navîn ya ku di Şerê Cîhanê yê Yekem de hatibû nivîsîn, wê îro ji nû ve bê nivîsîn. Rojhelata Nêzîk û Rojhelata Navîn piştî 1918'an û piştî Şerê Cîhanê yê Yekem, wê ji cihê ku lê mabû ji nû ve bê dabeşkirin. Lê vê carê wê daxwazên niştecihên herêmê, komên etnîkî û komên olî rewşa nû diyar bikin.

Di vê çarçoveyê de meriv dikare bêje dewletên ereb û sunne yên wek Erebistana Siûd û Qatar, her wiha Tirkiye û Partiyên Baas yên li Iraq, Sûriye û Ûrdûnê piştgiriyê didine DAIŞ'ê. Bi nêrîna min wê li Iraqê, wek Rêveberiya Herêma Kurdistan, ji bo sunneyan jî pergaleke siyasî ya federe pêk bê. Ev şerê ku li dij kurdan tê kirin jî, ji bo berfirehkirina axa sunne û bi destxistina petrol, gaz û dewlemendiyên bin erdê ye.

***parvekirin bê sekinandin. Ev pir grîng e. Ev rêbazeke fetisandina kurdan bû. Di civînên dewletên cîranên Iraqê yên ku di salên 1990'î de ji alî Tirkiye ve hatin lidarxistin de çi axaftin hatin kirin?***

Divê mirov li ser pozîsyona kurd û Kurdistan a li Rojhilata Nêzîk û Rojhilata Navîn baş bifikire. Wek nimûne; pozîsyona kurd û Kurdistan a herêmê ne wek pozîsyona Filistîna ereb e. Tenê yek dijminê Filistîna ereb heye, ew jî Îsraîl e. Ji aliyê din ve 22 dewletên ku endamên Yekîtiya Ereban in û 57 dewletên ku bi Konferansa Îslamê ve grêdayî ne jî bi awayekî li dij Îsraîlê ne û bi awayekî dostaniya erebên Filistîn dikin. Lê belê kurd û Kurdistan ne wisa ne. Çar aliyê kurdan bi hêzên neyar dorpêçkirî ye. Hemû ev hêz dixwazin bêhna kurd û Kurdistanê biçikînin û bifetisîn in.

Hin rêxistinên erebên Filistînî desthilatdariya Îsraîlê nas nakin û ji bo ku cihûyan ji Rojhilata Navîn biqewirînin têdikoşin. Yek ji sedemên grîng ên ku pevçûna Îsraîl û Filistînê didomînin jî ev e. Lê belê Filistîn warê cihûyan e jî. 10 emir li ku derê ji Mûsa Pêxember re hatin? Beriya Îsa, di salên 1000'î de yekem dewleta cihûyane li ku derê hatiye dameziran-din?

Lê belê, tê dîtin ku di van salên dawî de, derz li nîzama dij-kurd ketiye. Êdî dewletên ku heta 15 - 20 sal berê bi hevkarî kurd û Kurdistan dagir dikirin wek berê nikarin li hev bicivin û fenên bi lanet bînîn serê kurd û Kurdistanê. Dema ku yek ji van dewletan jî merc pêkan dibin, dikarin ew fenên xwe dubare bikin.

Ji bo kurd ji xwe re derfetan peyda bikin, dikarin ji van dewletan, bi yekî re têkiliyan bigeşînin. Bi nêrîna min ev tiştekî xerab nîne. Lê belê divê di van têkiliyan de şerta sereke ew be ku ev têkilî ziyaneke têkbir li perçeyên din ên Kurdistanê neke. Hişmendiya kurd a bala ji bo vê yekê grîng e. Ger ku têgihîştina hişmendiyeke bi vî awayî çê bibe, wê kurd û Kurdistan tevyek bê dîtin û ji bo ziyan li perçeyên din nebe, gav bêne avêtin. Ne siyaseta parçeparêz, wê siyaseta giştevan siberojê diyar bike.

Bi nêrîna min îro, li Rojavayê Kurdistanê, têkilîdanîna PYD'ê ya bi Rêveberiya Beşar Esed re ne cihê fikaran e, lê belê hewldanên PYD'ê yên çewsandinî û ji Rojava derxistina rêxistinên kurd ên din bûye sedemên nakokiyan.

Kurd û Kurdistan, netewe û welatek e ku hatiye dabeşkirin, perçekirin û parvekirin. Di vê rewşê de, bêguman têkilîdanîna bi van dewletan re ji bo perçeyên din û kurdên perçeyên din dibe cihê fikaran. Rewşên wiha, tenê bi saya hişmendiya kurd û Kurdistan a bala, dikare bi kêmtirîn ziyanê bi encam bibin.

**Li gor Civaknas İsmail Beşikçi pirsgirêka kurdan ya herî mezin yekitî ye. Beşikçi dibêje tîfaqa ku li dijî kurdan tevdigere deriziye û êdî wek berê nikare astengiyan derxe.**

***Alîkariyên leşkerî yên DYA û hin dewletên Ewropayê yên ji bo Herema Kurdistanê têne çi wateyê? Gelo meriv dikare bêje ku ev alîkarî ji bo garantîkirin û parastina Kurdistana Serbixwe ya ku wê di siberojê de bê avakirin hatine dayîn?***

DYA, hin dewletên Yekîtiya Ewropayê yên wek Frensa, Îngiltere, Almanya, Îtalya, Îspanya, Danîmarka, Hollenda û Hirvatistanê û her wiha Îranê, çek, teqemenî û alîkariya lojîstîk dane Rêveberiya Herêma Kurdistanê. Ev yek dikare wiha bê nirxandin ku di nîzama dij-kurd de hin guherîn çêbûne. Bi taybetî jî alîkariyên çekên giran mijareke balkêş û şayanî nirxandinê ye.

***Demek berê Serokê PYD'ê Salih Muslîm di daxuyaniyeke xwe de got: "Ger ku gelê Rojava daxwaza serxwebûnê ji me bike, emê ji vê daxwazê re hurmetdar bin." Gelo ev daxuyaniya Muslîm tê vê wateyê ku di demên pêş de wê Rojava jî bi daxwazeke wiha derkeve pêş?***

Herêma Kurdistan a li Bakurê Sûriyeyê, bi sînorê Tirkiye ve wek xeteke rastênhev, bê navber dom dike. Bi giştî ji vê herêmê re 'Heyvika hilberan' tê gotin. Lê belê Rêveberiya Baas, ji bo nexşeya şêniyên Kurdistanê xera bike, di salên 1960'an de kurdan ji hin deran diqewirîne, wan sirgûnî çolistanê dike û malbatên ereb dihêne û li şûnwarên kurdan bi cih dike. Ev guhertina demografîk di salên 1967 û 1968'an de, di dema serokkomariya Nûredîn Atasî de zêdetir dibe. Piştî salên 1970'yî bi hatina Hafiz Esad re ev pêvajo êdî bi awayekî sîstematîk tê pêkanîn. Wekî ku tê zanîn, li Iraqê, di dema rejima Baas de ji alî Seddam Huseyîn ve jî pêkanînên bi vî rengî destpê kirine. Kurdistan wek axa Iraqê hesibandin yek ji rêzikên Partiya Baas û netewperestiya ereb e.

Erebên navbera Cizîr û Kobanê, yên navbera Kobanê û Efrînê û yên ji Efrînê wêdatir encama vê siyasetê ne. Dema ku Rojavayê Kurdistanê bê gotin, divê kurdên ji Kurdistanê hatine qewirandin û erebên ku li şûnwarên wan kurdan hatine bicihkirin jî bê bîra meriv. Yekparçeyiya herêma Kurdistan a li Sûriye mijareke grîng e. Hemû ev kiryar, mijarên bingehîn in û bi salên 1920'an, bi Cemiyeta Neteweyan re û bi dabeşbûn, parçebûn û parvekirina kurd û Kurdistanê ve girêdayî ne.

***Gelo hikûmeta nû ya Îiraqê wê çiqas karibe pirsgirêkên di navbera Hewlêr û Bexdayê de çareser bike û ger ku çareser neke wê RHK çi bike?***

Bi nêrîna min pirsgirêkên navbera Hewlêr û Bexdayê çareser nabin. Rêveberiya ereb daxwazên kurdan qebûl nake û Rêveberiya kurd jî daxwazên rêveberiya ereb qebûl nake. Çimku ev pirsgirêkên bingehîn û kûr in. Ev pirsgirêk tenê ji alî RHK, bi rewakirina mafê çarenûsa xwe dikare çareser bibe. Jixwe pêvajoya serxwebûnê divê bi diyaloga navbera Bexda û Hewlêrê bimeşe. Ger ku Rêveberiya Navendî ya li Bexdayê daxwazên kurdan bi israr qebûl neke, di rewşeke wiha de bêguman mafê RHK heye ku bi serê xwe çarenûsa xwe diyar bike.

***Li Tirkiye Recep Tayyip Erdoğan bû serokkomar, Ahmet Davutoğlu jî bû serokwezîr û hukumeteke nû saz kir. Di çarçoveya axaftinên rayedarên hukumetê û daxuyaniyên Abdullah Öcalan de hun pêvajoya çareseriyê çawa dibînin. Ev yek ber bi ku ve diçe û wê kurd sûdeke çawa ji encama vê pêvajoyê bistînin?***

Di "Pêvajoya çareseriyê" de armanc ew e ku gerîlla derkeve derveyî Tirkiye û yên ku dixwazin dikaribin vegerin û siyasetê bikin. Hikûmet ji 'çareseriyê' vê yekê fêm dike. Di tûrikê hikûmetê de di derbarê çarenûsa pirsgirêka kurd û Kurdistanê de tiştek tune.

Di rastiyê de, li Rojhilata Nêzîk û Rojhilata Navîn, wê dîrok ji nû ve bê nivîsîn. Wê pêvajoya piştî Şerê Cîhanê yê Yekem ya Rojhilata Nêzîk û Rojhilata Navîn ji nû ve bê avakirin. Ne daxwazî û ramanên hêzên emperyal, wê daxwazî û ramanên gelên herêmê rewşa piştî vê hilweşînê diyar bikin. Di vê rewşa nû de wê kurd di nav malbata neteweyên cîhanê de, wek endamekî yeksan derkeve ser rûpelên dîrokê.

## Reşbelek

# Kurdîzade Ehmed Ramiz

Badê wacibanê ma ser o, ez vana, hetanî ewro herçiqas alim û giregir û edîbê cisn û qewmê kurdan ra ameyê, eger ti qismêko zaf tay ci ra mustesna bikerê -ê zî sey Ehmedê Xanî, Ehmedê Bateyî, Feqîyê Teyran, Elî Herîrî, Melayê Cizîrî qeddese sirruhum- ê bînî xizmetê înan heme şaranê teberê kurdan rê bîyo.

Merdimo ke neslê miletê xo rê xizmet nêkero, çiqas şaranê bînan rê keno wa bikero, verê Homayî de nêbeno wayîrê xeyr û sewabî, verê însanan de zî muteber nêbeno. Senî ke yew merdim maldar bo, eqreba û heval û hogir û cîranê ey muhtacê ardim û sedeqe bê, o wirzo sedeqe û zekatê xo nêdo înan, bido merdimanê xerîban û cayanê dûran.

O merdimo ke eqreba û heval û hogiranê xo vêşan verdo, şiro pîzeyê mirdan mird bikero, hukmê şerîetê mutehere derheqê ey de çi yo?

O ke qewmê ey muhtacê xizmetî bo, o şiro şarî rê xizmet bikero, çi ferq mîyanê ey û o ke malê xo beno dano tayê kesan ke roje de se merdimî danê înan de esto. Hal, o hal o ke nefsê keyeyê ey de hezar kesî estê hem bi şîdet muhtac ê, hem şer'en, urfen, edeten, eqlen nefeqeyê înan ey ser o ferz o.

Kurdî şeş mîlyonî estê. Ecêba hetanî nika şeş însanî wiriştê hewlîyêk seba kurdan kerda? Ney, ancî ney.

Yahû! Hewlîye lazim nêbî, werrekina xirabî nêkerdêne, ancî bes bi. Hela xusûsen mearîf de qesdê ruhê kurdan bîyo. Bi hawayêko winasî ke kafiran dano bermişî. Ti vanî qey bi ziwanê kurdan sankî qet kitabî nêameyê meydan. Herçiqas çend kesanê wayîrê hîmetî yew-di eserî bi ziwanê kurdan ardê wucûd lakîn çi heyf ke mîyanê kurdan de temamen munteşir nêbîyê. Coka întîşarê îlmî, emrê verênî de bi fedakarîya malî, her qewmêk bi lîsanê ey beno. Sewbîna, neşrê îlm û mearîfî qewman rê; zurî yo, îftîra ya, buhtanêko pîl o. Herçî qewmê ke îlm û mearîf, bi ziwanê înan mabeynê înan de vila nêkero, xora seadet û roşnê mearifî ra bêpar manenê, hêdî-hêdî vila benê, name û nîşanê înan nêmaneno.

Ez eşkena bê mubalexe hezar alim û giregir û edîbanê kurdan bihûmarî ke tayê înan ereban rê, tayê înan tirkan rê, tayê înan eceman rê xizmet kerdo! Yanî ziwanê înan de eserê meqbulî ardê meydan. Nika erebî, ecemî û tirkî ê eseran ra îstîfade kenê. Ewro ra pey zî do îstîfade bikerê. Biewnîn kurdan ra, ameyê, kamî rê xizmet kenê? Kurdî dekerdê matemê cehaletî, bi eseranê xo şarî mird û şad kenê. Feqet





ez nêeşkena nameyê înan bidî, çunke şar înan welîyanê muqedesan zano. Qudretê mi çin o ke ez nê sifetan ser o nameyê înan vajî, çunke îtîqadê mi de ê merdiman eke biwaştêne do bieşkayne men'ê jehrê cehaletê qatilî qewmê xo ra bikerdêne. Madem ke men' nêkerdo, ê zî şîrikê cînayetê cehaletî yê.

Edîbê kurdan ewro zî estê, se ra se bi vate û qelema xo kurd nîyê, se ra newayê înan vanê ma bi gonîya xo zî kurd nîyê, neuzubîllah nê tewir merdiman ra, çunke heramzadeyî eslê xo înkar kenê, yanî vîndî kenê!

Ey Ehmed Ramiz, de ti bêre memire, mebehcîye, mevaje sebr û tehemul bike. Esl û nesl û nesebê înan kurdan ra, werd û şimitiş û xoradayîşê înan kurdan ra, la seyd û nêçîrê înan seba şaranê teberê kurdan.

Welhasil verdayîşê ferzan kerdişê sunetan eger caîz o, kerdenê înan zî caîz ê. Bi nan û nîmetê Elî merdim perwerde bibo la xizmetê Welî bikero, gelo baş o? Beno ke şima ra tayê mi ra biheridîyê û biengirîyê, çunke vateyo rast tehl o.

Ya Malik! Keyeyê kurdan awan bike. Aqil bide înan ke dost û neyaranê xo nas bikerê.

Ya Semî'! Goşanê eşnawitişî bide înan ke wa bieşnawê.

Ya Besîr! Çimanê dîyayîşî seba înan kerem bike ke wa bivînê.

Ya 'Elîm! Berê îlm û mearîfî sey qewmanê bînan kurdan rê zî ake.

Ya Sanî'! Rayîrê sinet û ticaretî kurdan rê zî ake.

Ya Rehman wer-Rehîm! Ya Şafî' û Kafî! Ya Şefîq û Refîq! Ya Qadir û Qeyyûmê her çîyan ser o! Lutf û îhsan û keremê xo ra însaf, merhemet û şefqet alim û zanaye û edîb û pîlanê kurdan rê zî bide! Sey emsalê înan, pîlanê kurdan rê...

Heyhat!

Ey ekrad! Teyşanê îlm û mearîfî, baş bizanên pito ke nêbermo şit nêdanê ci.

Ey edîbê kurdan! Şima baş bizanên: keso ke seba seadetê qewm û eşîreta xo cehd û xeyret nêkero, mel'ûno tewr pîl o, çunke xîyanet o. Merg se hezarî rey xîyanetî ra baştir o.

Kurdên! Baş goşê xo bidên mi, ez şima rê hîkayeyêka tarîxî qisey bikerî. Wexto ke di dewletî estbî, înan ra yew Îran yew zî Yunan bi. Yunanî qumandanêkê xo heridnayo, seba kiştişê ey wirişto. Qumandan remayo, îltîca û dexaletê dewleta Îranî kerdo. Badê demeyêk, mîyanê her di dewletan de herb vejîyeno. Padîşayê Îranî ferman dano ke qumandano yunanî qumandanîya qolordîyêk bigîro xo ser. Ey qebul nêkerdo, red kerdo. Padîşayî bi şîdet israr kerdo. Ey şîdet red kerdo. Nîhayet mergê xo tercîh kerdo. Seba ke qewmê xo rê xîyanet nêkero jehr werdo, xo kişto. Ma kurdî neyar û dişmenanê xo reyde baş kenê. Ma qewm û eşîra xo rê xîyanetî zaf hewl zanê. Camêrdo qehreman, însano xazî û şehîd, welî û pîroz, o merdim o ke mergê xo tercîh keno la qewmê xo rê îxanet nêkeno. Edîbê kurmancan kurdîtî ra vejîyenê, vanê qey kurdîtîye ra vejîyayîş înan rê ulwîyet o, nêzanê ke ehmeqî û sefalet o. Çunke heramzade, o kes o ke eslê xo vîndî keno. Dereceyê heramzadeyan esfeles-safîlîn o.

Ez hemd û senayê bêpeynî ê Xelaqê ezelî û ebedî celle şe'nuhu rê kena ke ez kurd xelq kerda. Çunke ez kurd lajê, kurd lajê, kurd lajê ... Adem 'eleyhîsselamî.

Ez ezel ra kurd ameya, înşalah ez do ebedî zî kurd şirî. Ez do kurd bimirî, ez do kurd wirzî. Înşalah ez do kurdîtî huzurê Rebê îzetî de îsbatê mewcûdîyetê bikerî. Keyf û zewqo ebedî, cenet de kurdîtî bikerî. Bê îradeyê xo, ê merdimê ke eslen û neslen nîjadê kurdan ra ameyê, bi nîmetê kurdan werdo û bi sayeyê kurdan pîl bîyê û benê, la kurdan ra teber şaranê bînan rê xizmet kerdo û kenê.

### Fikrêko Tarîxî

Gelê kurdan! Ez şima rê fikrêko tarxî vajî? Baş goşê xo bidên mi ser, lazim o ke şima bizanê.

Verî şawîyayîşê Resûlê ekremî selelahu teala eleyhî weselem, zafê qewm û miletan pûtperest bî. Eb û ecdadê şima, o wext ancî muwehîd bî.

Qesem û sond! Bab û bapîrî, o wext wayîrê şew û rojan bi. Ayînê înanê ê dînî, yanî îbadetê înan, o wext tewirêk reqs bi.

Ya Reb, se hezar rey hemd û şukir to rê bo ke ma bab û bapîran ra caran nêbîyê muşrîk. Her wext, ancî şukir ke eb û ecdadê ma bi eşnawitişê pêxamberîya Resûlus-seqeleynî bi şerefê Îslamî muşeref bîyê... Elhemdulîlah



## Qureyşî Kamca ra Ameyê

Seba ke cenabê Resûlê ekremî selelahu teala eleyhî we selem, pêxamberê ma yo û qebîleya Qureyşîyan ra yo, ma do behsê Qureyşîyan zî bikin.

Kamca ra ameyê...

Qureyşî erebê muste'rebe yê. Muste'rebî bi eslê xo ereb nîyê. Welakîn bîyê ereb. Kalikê sereberz yê Qureyşîyan yanî bapîrê înan hezretî Îbrahîm Xelîlur-Rehman selatulah ela nebîyîna eleyhî û selem o. Îbrahîm Xelîlulah, welatê eyo esil dormeyê Ruha yo. Ruha zemanê tofanê Nûhî ra hetanî nika welatê kurdan o. Ruha de Xelîlulah eşto adir. Cenabê mewla bi qudret û ezamet û keremê xo adirê ê kafiran Xelîlê xo rê kerdo gul û gulistan. Dima şîyo Hetê Şamî, uca ra şîyo Misir, Misir ra ageyrayo ameyo erdê Kenanî, uca cenabê Ekremel-ekremînî dayîka ma Hacere ra Îsmaîl eleyhîselam dayo.

Dadîya ma Sara bi hesabê exlaqê beşerîyetî û cinîtîye hesed kerdo. Çunke cinîya ey a pîle a bî. Hema ewladî aye ra çin bî.[2]

Îbrahîm eleyhîselam Îsmaîlî û dadîya ey girewtê şîyo Wadî xeyrî zîzer.[3] Îsmaîl lajo pîl bîyo. Ereban ra zewicîyayo, ewlad û tornê ey bîyê erebê muste'rebe.

Ecêba! Eslê Qureyşîyan tirk nêbo? Nexêr! Çunke o wext Mawerayê Nehr[4] ra nat tirkî çin bî. Heta ke tayê tarîxan de vanê Îbrahîm bîn Azerul-Kurdî.

Îbrahîm û Îsmaîl nameyê Ecemî yê,[5] ereb nîyê. Çunke ê wextan, her qewmî nameyê tutanê xo erf û edetê qewman ser o nayne ro. Ewlad û tornê Îsmaîlî zî, eke bîyê muste'reb, hetanî zuhûrê îslamî nameyê ereban nayê tutanê xo ro.

Zuhûrê Îslamî ra nat, ereban zî nameyê ecemî îstî'mal kerdê. Madem ke wina yo, eslê Qureyşîyan beno kurd weselam ela mîn nebî'ul-huda...

Mi na mesela ser o zaf kesan reyde mubahese kerdo, teslîm bîyê.

Eslen û neslen kurdî şerîf û necîb ê. Feqet bi şerafet û necabet fexr nêbeno. Çunke her ferd şerafet û necabetê ey gereka exlaq û nefsê ey de estbo.

Gelê kurdan! Bixebitîn, erjê bab û bapîran qezenc bikîn, çunke fezl û kemal sey mal û milkî îrsî nîyê... Bi xebate yê, bi xebate yê, bi xebate yê, bi xebate yê.

Derbûmeselêkê kurdan esta: "Perîyan ra welî welîyan ra perî."

ma zî ewlad û tornê înan ê. Lazim o ke ma zî înan rê xeyrul-xelef bin. Neke sey ê merdimanê ke bîyê şerul-xelef.

Êyê ke cinsê xo ra vejyenê, se hezar rey heywanan ra xirabêr ê. Qurbanê heywanan bê. Çunke kesî nêdîyo ke doman û leyîrê tewirêkê heywanan vejîyê daxilê tewirêkê bînî bibê. Mi kurdan de no edet dî, sebeb cehalet o.

### Şecaetê Bab û Bapîran

Ecdadan ra palewanê menşûrî Ristemê Zalî, Behramê Çûbînî, aşiqê Şîrine Ferhad û emsalê înan zaf bi ced û hesab ameyê. Tarîxen îsbatkerde yo, heta ke kurdî îranîyan reyde bîyê, çiqas yunanîyan reyde ceng û herb û qewxe kerdo daîma yûnan binê ling û payanê eskerê Îranî de mendo bi sayeyê şecaetê kurdan zafer û xalibîyet seba Îranî, mexlubîyet û mehfîyet seba Yûnanî bîyo. Kurdan sey mîrî yûnanî ecilnayne, îranîyan zen kerdêne ke ê kenê.

Wexto ke îranijî kurdan ra cîya bîyê eksê gureyî virazîyayo. Feqet şecaetî ra zî mexrûr mebîn. Dewrê şecaetê bê îlm û marîfetî şîyo. Tu kes şêrî ra biqewet û jîyatêr nîyo. Bi sayeyê îlm û marîfetî, şêrî anê, zincîre erzenê vileyê ci, dekenê heps, beno sey kutikê verê pesî çunke şecaetê ey bê îlm û marîfet o. Qewmo wayîrê îlm û îrfanî sey însanî yo, qewmo cahil sey bolê pesî yo. Însan şitê pesî şimeno, peşmî, muyan û çermeyê înan dano xo ra, peynîya peyêne serebirneno, goştê ê mubarekan kebab keno.

Eger ma nêwanin, aqubetê ma pes o, eger ma biwanin ma zî sey înan benê wayîrê îlm û marîfetî. Êyê ke ewro çimê xo verdayo ma ke ma biwerê, bi sayeyê Homayî eger ma înan ra nêvîyarin ma do biresin sewîyeya înan, eger ma nêdin vernîya înan ma do kaleka înan de bimeşin...

Roşnîya her di çimanê mi gelê kurdan! Ma zaf cahil ê, ma bêhesab ê. Qey Homayî Ehmedê Xanî rehmetulahî eleyh rehmeten hîra vato:

Enwa'ê milel xudan kitab in
Kurmanc tenê di bêhisab in
Kurmanc ne pir di bêkemal in
Emma di yetîm û bêmecal in
Bil cumle ne cahil û nezan in
Belkî di sefîl û bêxudan in

Gelê kurmancan! Reyke bifikrîn! Zanayîş û zanayîş de zatê Wacibulwucûdî bi ziwanê xo yo şîrin ferman kerdo, bi persêko înkarî vato: êyê ke zanê û êyê ke nizanê qet benê yew?

Helbet û helbet ke caran nêbenê yew.

Ricaya mi na ya ke şima seba zanayîşî bixebitîn. Ez se hezar rey ricaya xebata zanayîşî şima ra kena, feqet ma kurdan rê tesîrê nesîhetan bercaî. Heyhat! Min panc serrî verê cû Misir de panc hezarî nusxayê Mewlidê Kurdî neşr kerdî. Mi peynîya ey de zî îlan kerdbi ke ma rê kitab û rîsalayanê kurdkî bişawîn, ez do teb' û neşr bikerî. Wax esef, heta na game tu kesêk kitabêko kurdkî nêşawito.[9]

Gelê xelk û birayê min! Seba hişyarkerdişê bab û birayanê xo bixebitîn heta ke îlm û marîfet dekîn ziwanê xo.

Fedakarî lazim a. Wayîrê hîmetê berzî bîn, ewilî qaydeyanê ziwanê xo virazîn, kitabanê dînî tercume bikîn, her tewir eseranê bifaydeyan dekîn ziwanê xo.

Cenabê Qadiyul-hacat emr û îrade kerdo vato Pêxamberê ma selelahu teala eleyhî we selemî zî.

Seba terxîb û teşwîq û hewesê kurdan wendişî ser o, min vîst û panc zerdî çapkerdişê Mewlidê Kurdî ser o xerc kerdî, heta ewro mi pancas qurişî girewtê, ê zî mi dayî heqê posta.

Panc hezaran ra nika mi het pêropîya se û çewres hebî mendê. Milkê îradeyê mi çin o. Elhemdulîlah hetanî ewro mi meaş zî nêgirewto.

Eger 'emrê mi biameyne rotiş, bêteredud mi do birotêne, rayîrê kurdan de serf bikerdêne, çunkî şar aşiqê mal û milkê dinya yo, ez aşiqê lefzê kurmancî ya. Şar aşiqê derd û îlet û merezan o, ez nêweşê sefîlî û feqîrî û cehaletê kurdan a.

Însan seba ke bireso maşûqa xo, yew; seba def'ê merezê wucûdê xo, didi; bêteredud û bêmulaheze heme milkê xo senî serf keno, ez zî derheqê kurdan de wina ya.

Feqet kar û edetê maşûqan mehûkerdiş û kiştişê aşiqan o. Derd û îleto ke hekîmê xo çin bo, o zî qatil o.

Esîrê mabeynê di canîyan ez a, meqtûlê mabeynê di qatilan ancî ez a.

Feqet canî zî nêeşkenê xelel biresnê ezmê mi.

Dinya heme mi ser o bibo yew, ancî mi rê bêumîdî nêbena, nêbena...

Eger ti vajî ey bûdela! To se kerdo, ti do se bikerî? Ez vana ke, her kes qasê halê xo ey ser o ferz o qesd û nîyetê xeyrî seba qewm û eşîreta xo bikero, seke şaîrê ereban vato:

Gelê kurdan! Hesyayeyî bizanên ke lezetê ey zaf semereyê ey erey o. Şima qîyas bikîn, îlm û mearif cew û kurêk û genim û hengure? Cew û kurêk, merdim badê neway rojan, genim badê di sey û hewtay rojan, hengure badê hezar rojan ci ra weno.

Qewmo ke ziwanê edebîyatê ey çin bo, heyatê medenîyetî ra mehrûm o, mudafeayê huqûqê xo ra mehrûm o. Çunke însano cahil malikê çiyanê huqûqîye nêzano heta mudafeayê heqê xo bikero. Ma kurdî heme wexto ke vejyenê verê memurêk yan verê merdimêk ke nameyê ey pîl yeno zanayîş, ma nefsê xo esîr yan evdê înan zanê.

Însan nêbeno evdê însanî, însan nêbeno esîrê însanî, însan beno evdê Xaliqî. Baxusus îslam, xulasayê însanan o, senî evdîyetê mexlûqan qebul keno! Ma kurdî elminnetulah, ma zî musluman ê, qetîyen caîz nîyo ke zelîl, heqîr û esîr bin!

Ma rê bil-îlm zanayîş, bil-fiîl bicaardişê panc ruknanê îslamî û terkê zuran, terkê nifaq û şiqaqan, qetl û qîtalan ra xo dûr girewtiş, pa terkê saîr kar û gureyanê nebaşan û muhabet û şefqet seba qewmê xo.

Xizmet nameyê kurdîtî ser o lazim o. Çunke îsmê umûmî yo û ferdanê xo ano yew ca...

Şêx, mela, paşa, beg, axa heta ke bireso şiwaneyanê ma heme daxil ê, binê nê nameyê muqedesî de yê, badê Homayî û pêxamberî, seyîdê ma kurd o, lefzê kurdî muqedes û muhterem o...

Muhterem Seyîd Taha Efendî! Ez wazena nê çend rêzan zatê to rê îthaf bikerî. Çunke welatê Kurdistanî de ez hamîyê mearîfî to vînena. Murewecê fikrê hurîyetî ancî ti yî nê warî de. Baqî rica mi ra, qebul to ra efendim.

Mesûd Barzanî diyar kiribû ku ji alî Hêzên Pêşmergeyan ve bidestxistina rêveberiya Kerkûkê pêwîstiyek e û gotibû; "Ji bo Hikumeta Federal ya Iraqê vê pirsgirêkê çareser bike em 10 salan sekinin. Arteşa Iraqê ji vê herêmê vekişiya. Pêwîstbû ku hêzên Pêşmerge kontrola wan herêman bikira. Me maddeya 140. pêk anî û êdî ev madde kete meriyetê. Ji niha û pê ve emê li ser vê mijarê nepeyivin."

Piştî biryardayîna referandûmê ya Rêveberiya Kurdistan, DAIŞ'ê berê xwe ji Bexdayê zîvirand û di 3'ê Tebaxê de bi ser Şengalê ve êrîşî Kurdistan kiribû.

Welat Baz

## Şîrîna Rojhilat

# Qesrî Şîrîn

Ev devera bi darên xurmeyên şîrîn hatiye xemilandin, ev dewrûbera bi qesrên şîrîn hatiye avadankirin Qesrî Şîrîn e. Ev der şîrîna Rojhilat qesra Kurdistanê ye.

Qesrî Şîrîin yek ji bajarên eyaleta Kermanşa ye. Bajêr li ostana Kermanşa, piştî İslamabad û Kengewer wargeha herî mezin e.

Cîranên Qesrî Şîrîn ji bakûr ve Qele Badrî, ji rojhilat ve Polê Zahab, ji başûr ve Neftê Şar û ji rojava ve jî bajarên Başûrê Kurdistanê Xaneqîn, Qere Tepe û Şêx Lanqar e. Qesrî Şîrîn li ser xeta sînorê Başûrê Kurdistanê dikeve.

Herçend li bajêr û derdorê lorî û soranî axêf hebin jî, rûniştvanên bajêr piranî bi zarava lekî û devoka Qesrî diaxifin. Zarava lekî ya Qesriyan, ku wek pêşko jî tê binavdan tek zaraveke têkele û ji hemû zarav û devokên din yên kurdî wûşe vergirtiye.

Hemû rûniştvanên Qesrî Şîrîn kurd in. Di nav rûniştvanên Qesrî Şîrîn de ji bilî muslumanên sunî, kurdên Şîe û yên Ehlî Heq jî hene. Beriya hatina İslamê bajêr yek ji nawenden pîroz yê Zerdeştiyan bûye.

Niştecihên Qesrê Şîrîn bajarê xwe wek 'Qesr' binav dikin. Di demên kevn de ji bajêr re Taxî Şîrîn jî hatiye gotin. Navê fermî ku îro jî tê bikaranîn, digîje dema Sasaniyan.

### Erdnîgar

Erdnîgara Qesrî Şîrîn li Kurdistanê yek ji deverên gelek balkêş e. Erdîma bajêr ku dûrî rêzeçiyeyên Zagrosan dikeve, bejî û berî ye. Ji ber vê yekê havînan gelek germ e. Li derdora bajêr hin girên nizm yên sîlsîleyên Zagrosan hene.

Herçend klîmayeke germ û çolî li heremê serdeste jî, derdora bajêr bi daristanên kesk ve xemilandî ne. Mehên biharê lehî û barana heremên bilind ku berbi vê beriyê ve dimeşe ritûbeta binê erdê diparêze û floraya erdîmê geş dihêle. Ji ber klîmaya erdîma heremê li derdora bajêr nebat û fêkiyên tropîkal tê gihandin.

### Mûzên şîrîn

Balkêşiyeke din yê Qesrî Şîrîn, mûzên vî bajarî ne. Mûzên keviya çiyayên Zagrosan wek nebatekî newaze gerdana beriya heremê dixemlînin. Mûz herçend fêkiyekî tropîkal be jî, wek balkeşiyeke bihûşta Kurdistanê li Qesrî Şîirîn yek ji nebatên herî tamdar e.

Ji bilî mûzan lîmonê heremê jî balkêşin. Lîmonên tirş li gelek deverên Kurdistanê digihên. Bi taybetî yên Qesrê di bazara Kurdistan û İranê de tên naskirin. Li gel cûrên zer lîmonên kesk jî li heremê digihin.

### Ateşgehên Bahdînî

Rojhilatê Kurdistanê û taybetî eyaleta Kermanşa wargeha Zerdeşt pêxember bûye. Damezrênerê Ola Bahdîn jiyana xwe li vê herêmê derbaskiriye. Bawermendên Zerdeştî heta salên dawîn jî li Qesrî Şîrîn û derdorê hebûna xwe domandine. Li aliyê din bi taybetî erdîma ostana Kermanşa tevî Qesrî Şîrîn di pirtûka pîroz ya Bahdîniyan de derbasdibe. Balkêşê li heremê navê gelek deveran di vê pirtûka pîroz de cîh digrin. Ev bermahiya ku li ber xerabûnê ye yek ji ateşgehên Zerdeştiyan e. Ateşgeh li dervayê bajêr nêzî rêya navbajarî ye.

Ateşgeha Qesrê di dema sasaniyan de hatiye çêkirin û piştî dagira ereban hatiye kavilkirin. Di dema xwe de yek ji awirgehên herî gewre û navdar bûye. Piştî ku dilsozên Bahdîn yên dawîn jî heremê an jî dînê xwe terikandine, ateşgeh jî leqayê qedera xwe hatiye ûu bi xerabûnê re rûbirû maye.

### Kerwansaray

Karwansaraya Ebasî yek ji berhemên kevnare û balkêş yên Qesrî Şîrîn e. Avahiya vê mêvanxanya mezin li taxeke kêleka bajêr cîh digre. Ev karwansaray di dema xelîfên Ebasî de hatiye çêkirin. Bingeha avahiyê li ser erdeke çargoşe hatiye danîn. Mimariya vê berhemê ji mînakên klasîk yê İslamî ye. Bi taybetî deriyê mezin yê avahiyê û kemberên hindirîn balkêşin. Ser avahiyê bi gumbetan hatiye girtin. Derdora avahiyê wek qeleyekî bi dûwarên sûrê ve hatiye parastin. Di nav avahiyê de gelek odeyên razanê, mitbex, hewşeke mezin, kîler û depo, herwiha gelek qurfeyên pirarmanc jî hene.


Çend dîmên ji Qesra Şîrîn











## Xurmeyên herî şîrîn yên Qesra Şîrîn in

Bajêr bi fêkiyên xwe navdar e. Yek ji fêkiyên heremê xurme ne. Xurmeyên Qesrî Şîrîn ji mînakên xwe yên derdorê xweştir û balkêştirin. Li heremê gelek daristanên xurmeyan hene ku lê, gelek cûreyên vê fêkiyê tên çandin. Derdora bajêr bi darên xurmeyên wek Caferî, Zahidî, Wezwan, Behraw û Xidrawî xemilandiye. Li heremê gelek malbat debara xwe bi xurmedariyê dike. Darên xurmê yên gihîştî bi qasî 20 û 30 metre bilind dibin û 20 sal fêkî didin. Ji ber ku kokê van daran di kûr de ye, pêdiviya wan bi ava zêde nîne. Ji bo derketina ser darên xurmê û komkirima fêkiyên gihîştî hostatî û alawên taybetî lazimin.



Karwansaray di dema xwe de li heremê yek jî meqerên leşkerî û mêvanxaneya herî mezîn bûye. Leşkerên avahiyê ji vê karwansarayê ewlekariya rêya bazirganiyê temîn kirine. Avahî herçend hin xesar dîtibe jî hîn jî li ser piya ye. Di avahiyê de ji bo beşên xerabûyî xebatên restorasyonê hîn jî didome.

### Şerê Çaldiranê û Peymana Qesrê

Navê Qesrî Şîrîn di bîranîna kurdan de bi peymaneke navbera dewletên Osmanî û Safewî cîh girtiye. Piştî şerên dûrdirêj di navbera herdû dewletên dagirkerên Kurdistanê, di sala 1639'an de li bajarê Qesrî Şîrîn di navbera herdû aliyan de peymana aştiyê hat morkirin û sînorê herdû dewletan hat keşifkirin. Bi gotineke din Kurdistan cara yekem ji alî van herdû dewletan li peymana ku vî bajarî hatibû morkirin, dûbeş bûbû. Sînorên emro bi vê peymanê hatibû diyarkirin. Ev bajarê şîrîn bûbû şahidê vê karesata tahl.

### Komkujiya Saddam

Di dîroka nûjen ya Qesrî Şîrîn de salên 1980'an de belkî jî di rabirdûya vî bajarî de demên herî xwînî û nebixêrbûn. Piştî destpêka şerê İraqê artêşa Baasî Qesrî Şîrîn jî di nav de beşek ji xaka Rojhilatê Kurdistanê dagir kir. Di pêvajoya şer û dema dagirê de bajêr ziyanên mezin dîtibû. Bi sedan rûniştvanên Qesrî Şîrîn hatibûn kuştin û ewçend jî hatibûn dîlgiritin an jî brîndarkirin.

Dema artêşa Saddam ji bajêr vekirşiya li pey xwe wêraneyekî hiştibû. Ev tanka Baasiyan ku ji alî Qesriyan wek "Pîhmaristanê Bomawejtiraw" tê binavkirin, yadaştên ev rojên xwînî ye ku wek abîdeya hovîtiya dagirkeran hêrsa Qesriyan zindî dihêle.


Bîranîna tahl ya rejîma Saddam li Qesrê

### Parkên bajêr

Parkî Şar li bajêr cîhê sereke yên bîhndanê ye. Siya darên bilind û pelfireh rojên germ yên havîne talda yeganê ya bajariya ye. Park di nav bajêr de ye. Li ser meydaneke mezin hatiye damezrandin. Nav parkê bi çîçek û darên rengareng hatiye xemilandin. Kolan û meydanên biçûk yên parkê bi peykerên ajalên cuda hatine neqişandin. Dîk û tawisên vê parkê wek remza bajêrin. Rojên înê û yên bêhndanê ev park serapê bi bajariyan ve tijî dibe. Ji bo mehên havînê geşt û şahiya şevê li kêleka parkê lûnaparkekî jî hatiye avakirin.

### Aborî

Aboriya Qesrî Şîrîn li ser kîşewerizî, ajaldarî û bazirganiye. Wek gelek deverên Rojhilatê Kurdistanê li bajêr sanayî an jî endustrî nîne. Dewleta İranê li heremê tesîs û fabrîqayan dananiye. Ji ber ku bajêr li ser sînore, bazirganiya sivik pêşketiye. Ji bilî bazirganiyê gelê bajêr zêdetir bi berhemên kiştûkalî debara xwe dike.

Li Qesrî Şîrîn çend nawendên bazirganiyê hene ku rûniştvan li van deveran lazmatî û pêdiyên rojane tedarik dikin. Pasajî Kawyan yek ji deverên bazirganiya bajêr e. Pasaj ku pirtebexe, di nav bajê de di salên dawîn de hatiye damezirandin.

### Sûka bajêr

Li sûka bajêr hîn jig elek pîşeyên otantik tên kirin. Xiyat yanê terziyê sûka Qesrê di nav dengê makîna dirûtinê de di alema xwe de dixebite. Wek hemû bajarê Kurdistanê xiyat di sûkê de cîhekî îstîsna digrin. Lewra hîn jî gelek kes şanaziya lîbasên gelêrî digrin û ew jî tenê ji alî xiyatan ve tên dirûtin.

### Lihêvdûz

Lihêfdûzên sûkê ji paşeroja xwe û karê xwe di gumanan de ne. Li gor hostayan li Qesrê êdî ev kevneşopiya lihêfdûzî nêzî rojên dawîyê ne. Ev pîşeya kevnare û ev lihev, doşek û balîvên klasîk cîhê xwe ji malên fabrîkat re dihelin û şagirtên vê pîşeyê nagihên. Lihêvdûz ji bilî lihevdûziyê kulavdûziyê jî dikin. Hosta kulavên ku ji bo şivanên bajarê xwe çêdikin bi serbilindî nişan didin.

### Şîrînxane û Nanxurme

Qesrî Şîrîn bajarê xwarin û vexwarinên şîrîne jî. Li heremê çêkirin û xwarina şîranî û cûrê pasteyan pêşketiye. Şîranîfiroşên bajêr her peznê şîraniyên xwe didin û dibêjin li Kurdistanê pastayên herî xweş ew difroşin. Li gor hostayan, bi taybetî di rojên Newroz, remezan, cejn û şahiyan de muşteriyên wî zêde ne.

Li kêleka pastafiroş dikkana nanxurme cîh digre. Nanxurme ji arvanê xurme û şekir pêk tê. Arvanê ku tê hevîrkirin pêşiyê bi dar tê vekirin û bi çend cûreyan tê neqişandin. Hevirê gilover paşê di tendûrê de demekî tê pijandin. Ev nanxurme demeke dirêj karê bê sekinandin.

## Bendav 'bihuştê' têk dibin

# Warên elewiyan wêran dibin

Rawîn Stêrk

Welatiyên elewî ku ji destpêka dîroka xwe hetanî niha rastî kuştin û qetliyaman hatine û ta roja îro her bi terikandina war û welatên xwe jiyane, vê carê bi rêbazên cûda ji milkê xwe têne qewirandin. Bi taybetî li Tirkiyeyê hetanî salên 90'î jî elewî bi siyaset û rêbazên polîtîk hatin tengijandin û ji wê bi şûn de jî bi hincetên hemdemî têne mexdûrkirin. Piştî ku li Dêrsim erdnîgara elewiyan di bin avê de hate hiştin vê carê li Semsûrê, bi taybetî jî li herêma ku gundên elewiyan lê niştecîne, bi çêkirina bendavan mexdûriyeke nû li hemberî elewiyan e.

Di salên dawî de li Tirkiyeyê bi çêkirina HES û bendavên avdanê, bi taybetî jî li Kurdistanê û li aliyê Behra Reş xweza tê wêrankirin. Bêyî têkbirina xwezayê, welatiyên ku li wan deran dijîn jî careke din rastî koça bi zorê têne kirin. Elewî, ku ji Xorasanê vir ve bi meseleya koçberiyê re rû bi rû têne hiştin, niha jî bi bendav û projeyên HES'an careke din li ber dîwarê zordariyê ne.

Ji ber ku hêza şeniyê gundên elewiyan têrî rawestandina bendavan nake, herwiha nikarin dengê xwe bi raya giştî bidin bihîstin û têkoşîneke fireh bo rawestandina van projeyan bimeşînin, gundî daxwaza diyarkirina cihên nû dikin da ku ji warên xwe dernekevin. Ji ber ku bêyî zeviyên bi tabu derdora gundan malê xezîneyê ye gundî dixwazin ku destûr bê dayîn da ku li nêzî gundên xwe ku di bin avê de dimînin gundên nû ava bikin.

Bajarê Dêrsim ku wek navendeke elewîtiyê tê zanîn, piştî çêkirina çendîn bendavan ji taybetiya xwe hate derxistin, ziyaret û îbadetgehên elewiyan di bin avê de hatin hiştin. Baskeke elewiyên Dêrsim ku li navbera Semsûr û Meletiyê de niştecîne jî bi çêkirina 8 bendavên nû li ber deriyê 'qewirandinê' ne.

Li Semsûrê piştî erêkirina projeyên 8 bendavan, li cihên ku ew bendav bêne girêdan niha xebat destpêbûne û piştî ku proje hatin îhalekirin wê înşaatên bendavan destpê bikin. Di nava van 8 giravan de 6 ji wan li ser gundên elewiyan têne girêdan û bi dehan gund di bin avê de dimînin. Şenêyê van gundan her çiqas li hemberî vê beretgan nîşan bidin, bi serlêdanên fermî li dij girêdana bendavan bisekinin jî, proje didomin û di demên nêz de bendav dê dest bi girêdana avê bikin.

Yek ji wan Bendava Koçalî ye û








gundên ku temamî şêniyê wan elewî ne, Bûwika, Qerika, Şeyînka, Şêxbor, Kurêmilê û Seqelî tevî zevî, cihên ku şênî lê dijî û her tiştê xwe di bin avê de dimîne. Piştî salên 90'î li van gundan gelek rez hatin çandin, dar û ber gihîştê û gundiyan her der zivirandin daristanan. Niha her ked û gihandiniyên wan têk diçin. Ew herêm wek navenda Eşîra Kaw tê zanîn û bi wêranbûna van 6 gundan ew eşîr belavala dibe. Mixtarên van gundan beriya demekê bi Waliyê Semsûrê ve li hev rûniştin lê mixabin tu encam derneketin.

Dîsa Bendava Gomika jî xwedî bêyomiyeke wisa ye. Bi girêdana vê bendavê re jî eşîreke mezin ya elewiyan tê 'qewirandin'. Li vir jî gundên wek Gomika, Azika, Axçalî û çend gundên din di bin avê de dimînin. Şeniye van gundan jî tevî zevî, xanî û rezen xwe li ber talûkeya bendavê ne.

Ew herdû bendav bi temamî li ser gundên elewiyan têne girêdan. Bêyî van bendavên wek Çetîntepe, Bûyûkçay, Bêsnî û Xeta Îrsale ya Cêlikan jî gelek gundên din yên elewiyan têk dibin. Bendava Bebek 1 û ya Kolik-Semsatê jî dîsa hin gundan û xwezeyeke dewlemend di bin avê de dihêle.

Şêniyê van gundan, ji ber ku hetanî niha rêyek ji wan re nehatiye nîşandan di nava fikaran de ne. Projeyên van bendavan zêdetirî 50'î salî ye ku di rojevê de ye û niha gihîştiye asta dawî, û di demek nêz de wê îhaleyên wan bêne kirin. Tevî ku her tişt amade be, bo gundên ku di bin avê de dimînin ne cîhek hatiye nîşandan û ne jî bo gundiyan rêyek hatiye salixdan.

Welatiyên van gundan bi taybetî jî ji bo ku ew proje wê bibin sedema pişavtina çand û baweriya elewiyan, naxwazin ku ji hev bibin û warên xwe biterikînin. Ji ber ku herêma elewiyan ya li Semsûrê bi temamî çiya ne, zevî û erazî kêm e, piştî ku bendav bêne girêdan tiştek di destê wan de namî ne. Di ser de jî der û dora wan jî mal û milkê xezîneyê ye, rêya li ber elewiyan ya niha tenê koçberî ye.

Ji ber ku ew bendav tevî nerazîbûna wan têne girêdan û nikarin rê li ber bigirin, daxwaza gundiyan ev e ku dewlet ji wan re nêzî gundên wan li ser milkê dewletê cîh bê veqetandin û ew li ser axa xwe bimînin. Lê heya niha tu bersivek erênî bo vê meseleyê nehatiye dayîn.

Welatiyê bi navê Kureyş Yoldaş ku em pê re ketin têkiliyê di derbarê mijarê de wiha dibêje, "Em erdê xwe naterikînin. Ku dewleta ku heta niha ji bo gel tu tiştek nekiriye û dixwaze me ji ser erden me biqewirîne em xwe wek welatiyê wê dewletê nahesibînin. Ev der cihên ku em lê hatin dinyayê û lê mezin bûne. Em vê xaka ku ji pîr û kalên me ji me re maye terk nakin û ji vir naçin."

Welatiyê bi navê Huseyîn Turap'ê gundiyê Şexbor jî wiha got, "Polîtîkaya ku dewlet li vir dixwaze bimeşîne polîtîkaya pişaftin û tunekirina çanda me ye. Dixwazin çanda me ya elewîtiyê ji holê rakin. Mebesta dewletê qewirandin, ji hevkirin û ji holê rakirina çanda me ye."

Welatiya bi navê Gulay Erbaya ku li gundê Şeyînkayê dijî anî ziman ku ji ber ku ew elewî ne bi zanebûn bendavê li vir çêdikin û wiha pêde çû: "Ez dixwazin li gundê xwe yê ku lê hatime dinyayê bimirim. Emê tu carî rê nedin ku me ji vir derxînin."

Mixtarên gundên ku di bin avê de dimînin jî çend caran li hev rûniştine û heta niha bo ku walîtî çarayekê ji wan re bibîne xebat kirine. Heya bi riya parlementerên Semsûrê mijar bo Enqereyê jî bi rêxistine lê kesekî tu bersiv nedaye wan. Daxwaza wan êdî ev e ku qe nebe destûr bê dayîn ku li nêzî gundên wan û li cihên ku di bin avê de namîne bikaribin ji xwe re gundên nû avakin û malên xwe bikêşin wir.

Parêzer Bülent Çınar ku bo betalkirina projeya Bendava Koçali têdikoşe jî diyarkir ku bi girêdana bendavan gelê herêmê bê çare û bê ax tê hiştin. Çinar wiha got, "Me bi rayedarên bajêr û dewletê re mijar gelek caran nîqaşkir lê tu encam nayên girtin. Bêyî milkê ku di binê avê de dimîne qet metreyek jî eraziya kesekî nîn e. Ew proje bi tevahî xweza û çanda me têk dibin. Me heta niha dora du hezar îmze berhevkir û me teslîmî perpirsan kir lê herkes guhê xwe digire. Bi hezaran sal in ku em li vir dijîn û warê me ev der e. Ne cihî din nîşan didin û ne jî rêyekê li ber gel vedikin. Ew bêbextî ye."



## Produksiyon û dûblaja bi kurdî

# Hîmekî nû bo pêşketina kurdî

Mistefa Malbadî

Heta 15-20 sal beriya niha teknolojî, medya, ragihandin û hwd. çend ji wan têgehan bûn ku kurd jê re pir biyan bûn û heta meriv dikare bibêje di vê qadê de kurd qet tune bûn; lewre televizyonên kurdî pir kêm bûn û yên heyî jî ne di wê astê de bûn ku projeyan hilberînin an jî bidin hilberîn. Lê piştî di 15 Gelawêja 1995'an bi damezirandina Med TV û dû re Kurdistan TV û KurdSat'ê ev qada ragihandinê roj bi roj di nav kurdan de geşiya û îro di warê ragihandin, çapemenî û beşên bi wan re têkildar de her çiqas kêmasî hebin jî di asteke baş de ye. Bi mebesta ku em rewşa van beşên ku di nava kurdan de dereng destpê kirin û bi rewşa kurdan a niha ve girêdayî bi hin pirsgirêkên profesyonelî û teknolojiyê re rû bi rû ye vekolin, me bi hin berpirsên şirketên produksiyonê re hevdîtin pêk anîn.




Marîn Rehmanî


Önder Faruk Sincar

### Dereng destpêkir lê bi lez mezin bû

Çêker û xwediyê Artist Fîlm – Prodûksiyonê, Önder Faruk Sincar da zanîn ku beriya TRT 6'ê, ji ber ku di vê qadê de bazara kurdî tunebûye, gellek kesên ku xwestine xebatan pêk bînin, ji bêderfetiyan arasteyî qadên din an jî bazara tirkî bûne, lê bi damezirandina TRT 6'ê re ji bo kurdî di vê qadê de cîh vebûye û ev qad ji bo gellek kesan bûye qada debarê. Önder Faruk Sincar, li ser arîşe û geşedana qada produksiyona kurdî ev agahî dan me: "Karê dûblajê û bi taybetî jî karê produksiyonê karekî pir zor e. Di vî warî de reqabeteke pir dirinde heye. Ji bo ku meriv di vê qadê de li ser piyan bimîne divê meriv pir zêde bixebite û projeyan biafirîne. Di destpêkê de, ji ber ku di vî karî de kesên şareza kêm bûn, kar û berhemên baş û tekûz pir kêm derdiketin holê. Meriv dikare bêje ku îro kurdî di warê produksiyonê de di asteke normal de ye"

### TRT 6 bû sparteka aborîya

Önder Faruk Sincar da zanîn ku piştî vebûna TRT 6'ê, di warê aborî de derfetên baş pêkan bûne, gellek kesên ku bi vî karî re têkildar bûne yan jî ne têkildar bûne dest bi karê dûblajê kirine û ji ber ku ew bêtir xwedî tecrûbe bûne, dû re ji xwe re şirketek ava kirine û dest bi projeyên mezin kirine.

Di derbarê proje û xebatên ku niha birêve dibin de jî Sincar got: "Ji ber ku sezona kar hatiye girtin niha karê me hinekî rawestiya ye, lê di demên normal de em bernameyên çand û hunerê, bernameyên teknolojiyê, stopên raya giştî û her wiha belgefîlman çêdikin." Sincar da zanîn ku hemû ev karên wan; ji projekirinê heta çêkerî û amadekirina dawî, ji alî wan ve têne kirin.

Önder Faruk Sincar bi bîr xist ku qada dûblaj an jî produksiyona kurdî êdî tenê ji TRT 6'ê pêk nayê û bi zêdebûna kanalên kurdî re ev qad bêhtir geşiya ye. Sîncar, li ser karên şirketa xwe got: "Ji ber ku em karê dûblajê kêm dikin, ji bilî TRT 6'ê bi dezgeh û aliyên din re pir naxebitin. Erê têkiliyên me bi hin televizyonên herêmê û yên Başûr re hene, lê ji ber ku ew piranî karên dûblajê didin, em bi wan re nikarin pir bixebitin. Lewre em ji karê dûblajê bêtir karê çêkerî, produksiyon û bernameyên hazir ên pakêt çêdikin"

### Produksiyona kurdî bû qada pîşeyî ya debarê

Hevparê Şirketa Layen Produksiyonê Marîn Rehmanî jî da zanîn ku ew ji dema damezirandina Medya TV ve bi karê dûblajê re eleqedar bûye, lê di wan deman de, ji ber bêderfetiyan, ev kar ne karekî ku meriv bikaribe debara xwe pê bike bûye. Marîn Rehmanî got: "Lê bi vebûna kanalên din ên kurdî, ev qad mezin bû, geşiya û ji gellek kesan re bû qada pîşeyî ya debarê." Rehmanî, Di derbarê potansiyela şirketa xwe de ev agahî dan me: "Em niha bi 3 stûdîoyên xwe dikarin rojê dûblaja 2 rêzefîlm, 4 kartonfîlm û 3 fîlmên sînemayî bikin. Li gel van karan em kêşan û amadehiyên reklam û fîlmên sînemayî jî dikin. Niha 6 bernameyên me yên cihêreng ku dom dikin hene. Projeyeke me ya belgefîlmên kesayetên kurd ên navdar heye. Amadekariyeke me ku em li ser kurdên kafkasan jî bername yan jî belgefîlman çêbikin heye. Em li ser partiyên kurd ên kevn jî belgefîlman çêdikin. Hemû belgefîlmên me, bi şêwirmendiya Dîroknas Namik Dînç têne çêkirin. Sala çûyî em bi belgefîmekî xwe beşdarî Mihrîcana Fîlman a Porteqala Zêrîn a Antalya bûn. Her wiha sala çûyî me fîlmekî sînemayî kêşa, îsal me kêşana 2 fîlman da ber xwe, yek qediya û yê din jî wê bê kêşandin. Em hewl didin ku di salên pêş de salane 5 fîlmên sînemayî bikêşin"

### Sewt û gewriya kurdî ji gelemşe û tîna zimanên biyanî rizgar dibe

Marîn Rehmanî di derbarê bikaranîna ziman de da zanîn ku ew hewl didin kurdiyeke hevbeş ku Bakurî û Başûrî û hemû kurd bikaribin têbigihîjin û hez jê bikin bikar bînin. Rehmanî, fikara xwe ya di vê qadê de çewt bikaranîna kurdî anî ziman û da zanîn ku dû sal berê bi berpirsyarê ziman ê şirketa wan Mazlûm Dogan re biryar dane ku pêyvên biyanî yên ku ahenga zimanê kurdî têk dibin ji nav kurdî derxînin û di şûna wan de pêyvên kurdî yên herêmên din bikar bînin. Rehmanî rewşa kurdiya Başûr ku pêyvên teknîkî û fermî bi gelemperî rûniştine mînak nîşan da û sedemên ku wan arasteyî biryareke wiha kirine wiha anî ziman:

"Sedemên vê biryara me sentaksa dûblajvanan bû. Me xwest êdî em bi dûblajvanên ku xwedî gewriya kurdî ne re bixebitin. Em bi yên ku bi sentaksa tirkî, kurdî dipeyivin re naxebitin. Ev şêweya ku em pêk tînin ji bo me re zor e, lê belê ji bo siberoja kurdî divê ev kar bi vî awayî bê kirin. Di vê bareyê de em bi enstîtuya kurdî û zimanzanên Bakurî û Başûrî jî şêwirîn. Di warê wergerê de jî em bi vê ferasetê û bi hendazeyî tevdigerin. Kesên ku bi me re dixebitin teqez divê kurmancî û zarên kurmancî baş zanibin û qet nebe ji soranî û zazakî hayedar bin. Gellek kesên ku di warê akademîk de hosteyê vî karî ne, lê ji ber ku awaz û sewta wan ne kurdî ye, em bi wan re naxebitin. Lê ev yek arîşeya peydekirina kesên profesyonel derxist pêşberî me. Di vê babetê de, di destpêkê de wergêr û dûblajvanên me û bi taybetî yên jin zehmetiyan dikêşin, lê belê ev şêweya me hêdî hêdî rûnişt û îro em gihîştine asteke baş"

### Xweserî pêşî li afirîneriyê vedike

Marîn Rehmanî diyar kir ku ew produksiyoneke xweser in û ti têkiliyeke wan a organî bi tu aliyan re nîne, ew bi serê xwe projeyan hildiberînin, amade dikin û pêşkêşî kanalên televizyonên kurdî dikin. Rehmanî da zanîn ku ew fîlmên sînemayî, rêzefîlm, kartonfîlm û belgefîlman bi vî awayî amade didin lê hin karên din yên wek reklam û tiştên bi vî awayî jixwe bi ser sîparîşê pêk tînin.

Marîn Rehmanî di derbarê siberoja qada produksiyona kurdî de axaftina xwe wiha bi dawî kir: " Siberoja vê qadê bi geşedanên siyasî, civakî û aborî yên kurdan re têkildar e. Lê di vê babetê de em xweşbîn in. Ji ber tecrûbeyên me yên salan û herikîna geşedandina ber bi asta îroyîn, ez dikarim bêjim ku wek her qadên geşedanên civakê, di vî warî de jî êşikên zayîna kar û xebatên pir giranbûha têne jiyîn û ev qad xwedî siberojeke pir dewlemend e"

# Tirkî bes e, êdî dora kurdî ye

Li ser banga saziyên weke Kurdî-Der, Eğitim Sen, KCD, Şaredariyên DBP'ê û saziyên civakî, di 15'ê Îlonê de wê li Amed, Cizîr û Geverê perwerdehiya kurdî dest pêbike. Heman sazî herwiha ji malbatan dixwazin ku bi armanca protesto kirina sistema perwerdeya fermî, zarokên xwe ji bo hefteyekî neşînin dibistanên dewletê.

Bi piştevaniya hevbeş ya saziyên kurdan yên li herêmê di 15'ê Îlonê de li Amed, Cizîr û Geverê perwerdahiya bi kurdî destpê dike. Li Amedê Mala Piştevaniya Perwerdahiyê ya Ferzat Kemenger ya Şaredariya Baxlarê bo ku wek dibistana kurdî bixebite hate organîzekirin. Heya niha bo vê dibistanê 35 serlêdan hatin kirin. Herwiha bi heman armancê li Cizîr û Geverê jî amadekariyên dibistanên kurdî bi dawî hatin. Li dibistanên van herdû navçeyan ji bo her yekê 100 kontenjan hat veqetandin û hatê ragihandin ku bi serlêdanan, kontenjana herdû dibistana jî tije bûye.

Li aliyê din dîsa bi daxuyaniya ku heman sazî beşdar bûn ya li Amedê bang hate kirin ku di 15'ê Îlonê de, di destpêka demsala hîndekariyê ya nû de ji bo hefteyekê dibistanên fermî bêne boykotkirin.

Di daxuyaniya ku ji alî Serokê Şaxê Amedê ya Kurdî-Der'ê Selahattin Gültekin ve hat xwendin de her wiha hate diyarkirin ku wê li Amed, Gever û Cizîrê dibistanên ku perwerdehiya kurdî didin bêne vekirin. Selahattin Gultekin da zanîn ku boykot û vekirina dibistanên bi kurdî wê li pêşiya pêvajoya çareseriyê nebin asteng û angaşt ku wê dewlet pêşî li vekirina dibistanan negire. Gültekin diyar kir ku wê dibistanên kurdî bi tu awayî bi Wezareta Perwerdehiyê re ne têkildar bin û di wan dibistanan de wê perwerdehiya zimanê tirkî jî bê dayîn.

Serokê Giştî yê Kurdî-Derê Sebahattin Gültekin diyar kir ku gelê kurd 90 sal in di agirê asîmilasyonê de dişewite î wiha berdewma kir: "Ne tenê gelê kurd, gelên din jî bi heman şêweyê re rû bi rû mane. Lê belê ji ber ku wek Kurd ji aliyê hejmar ve pir in nehatin tunekirin. Sebahattin Gültekin bi bîr xist ku gelê kurd, li dijî vê asîmilasyonê ji 1925'an vir ve têkoşiya e û bi tevî ya dawî, kurdan 29 caran serî hilda ne. Kurdan bi tekoşîna xwe înkar têk birin."




**Bi vebûna dibistan û destpêkirina perwerdahiyê re mijara zimanê zikmakî careke din ket rojevê. Kurd li aliyekî amadekariya perwerdahiya bi kurdî, li aliyê din ya boykotê dikin.**

### Asîmilasyon bi gotinê naqede

Sabahattin Gültekin di berdewamiya axaftina xwe de angaşt ku zarokên wan li dibistanan têne asîmilekirin û destnîşankir ku wek pedagojîk, ji bo zarokek çalakiyên xwe yên bîrwerî û kesane pêşbixe divê bi zimanê xwe dest bi perwerdehiyê bike. Gultekin wiha dom kir: "Niha derfetên wiha tune ne û heta wiha dom bike wê asîmilasyon jî hebe. Asîmilasyon bi gotina 'Asîmilasyon qediya' naqede. Ji ber ku em zanin ev dibistan navendên asîmilasyonê ne, li dij vê sosreta asîmilasyonê em dixwazin ku gelê kurd hefteyêkî dibistanên fermî boykot bike û zarokên xwe neşîne van dibistanan"

### Sedemê bingehîn yê pirsgirêka kurd ev yasa ne

Sabahattin Gültekin, di berdewamiya axaftina xwe de da zanîn ku ev dibistanên kurdî li ser zemîneke yasayî nayêne vekirin û jixwe pirsgirêkên bingehîn ji yasayên Destûra niha ya Tirkiyeyê der dibin. Gültekin got: "Em Tirkiyeyê red nakin, di van dibistanan de wê perwerdehiya zimanê tirkî jî hebe lê belê wê perwerdehiya bingehîn bi kurdî be. Jixwe zarok ji televizyonan, ji kuçeyan û ji derûdorê tirkî hîn dibin. Di van xebatan de wê mîsyona Kurdî-Der'ê gihandina mamosteyan û amadekirina pêdiviyên perwerdehiyê be. Di babeta perwerdehî û peydakirina mamosteyan de Kurdî-Der peywirekî grîng digire ser xwe. Hemû sazî û dezgehên kurdan piştevaniya vê xebatê dikin.

### Divê mafê perwerdehiya zimanê zikmakî neyê astengkirin

Hevserokê Şaxê Amedê yê BES'ê Mehmet Karaaslan di derbarê vê mijarê de got: "Pirsgirêka Kurd", bi tekoşîna şer û bedêlên giran a 40 salên dawî gihîştiye astekê û desthilatiya AKP'ê hewl dide ku vê geşedanê bi awayek cûda şîrove bike û çareseriyeke li gor xwe pêk bîne. A rast, divê kurdî û ya zimanên din bi yasayan bêne parastin. Divê derfet bêne peydakirin da ku herkes bi zimanê xwe perwerde bibe. Ji ber ku ev daxwaziyên kurdan bi cih nehatine, kurd zarokên xwe naşînin dibistanên dewletê, wan boykot dikin û ji bo zarokên xwe derfetên perwerdehiya kurdî hildiberînin. Ji ber van sedeman em piştevaniya vê boykotê dikin."

### Divê projeya pirçandî û pirzimanî bi destûrnameyê bê parastin

Hevserokê Şaxê Amedê yê Eğitim-Sen'ê Yıldırım Arslan jî pêwîstiya teşhîrkirina asîmilasyonê destnîşan kir û got: " Asîmilayon tawaneke dijmirovahî ye. Em wek Eğitim-Sen, ji roja duşemmê bi şûn ve naçin dibistanan. Li dij asîmilasyonê, ji bo bikaranîna ziman, ji bo dîrok û çandê, ji bo hemû gel karibin bi zimanê xwe bijîn, divê pirçandî û pirzimani bi destûra bingehîn bê misoger kirin. Niha di lîseyan de dersên 'ziman û vegotin'ê dersên mecbûrî ne. Xwendekarekî di hemû dersên xwe de serkeftî be jî, ger ku di vê dersê de serkeftî nebe, ew xwendekar derbasî poleke bilindtir nabe. Ev pergala ku ji bo tirkî ev çend parasvaniyê dike, divê ji bo kurdî jî parasvaniyê bike"

### Parastina destûrî wê Pêvajoya Çareseriyê jî bigeşîne

Yıldırım Arslan bang li Serokkomar Recep Tayyip Erdoğan kir û got: "Bila hemû gelên Anatolyayê û yên Mezopotamyayê bibin xwedî pergaleke perwerdehiyê ku ziman, dîrok û erdnîgariya xwe hîn dibe û xwe tê de baş hîs dike bê çêkirin û bila ev pergal bi destûrê bê parastin. TRT 6 û beşên ziman yên ku di zanîngehan de hatine vekirin di warê destûrî de bê wate ne. Mijarên ku divê bi baldarî li serê bê sekinandin ev in: Ger ku parastina destûrî hebe asîmilasyon qediya ye. Lê ger ku parastina destûrî tunebe û ew destkeftî di dezgehên dewletê de bê nirx bin, em qebûl nakin. Yek ji projeyên hikûmetê jî destûreke nû bû, Madem di vê mijarê de xebat têne kirin û li ser her sê xalên destpêkê yên destûrê evçend nîqaş têne kirin, bilêvkirina yek ziman, yek al û ev feraseta yekkirinê ji bo çi ye? Ger ku motîfên pirdengî, pirneteweyî û pirzimaniyê bi destûrê bibine xwedî statuyeke yasayî, ev yek wê mohra xwe li vê sedsalê bixe. Ger ku ev maf bi destûrê bêne parastin, wê pêvajoya çareseriyê jî bi encameke erênî bi dawî bibe û wê pêvajoya çareseriyê bi vê yekê bêtir bigeşe.

Her wiha xwendekarên van dibistanên deryasayî wê perwerdehiya mecbûrî ya ji alî dewletê ve tê dayîn wernegirin. Tê gotin ku malbatên van zarokan ên ku zarokên xwe dişinin van dibistanan, amade ne ku bedêla vê helwestê bidin. Pirtûkên ku ewê di van dibistanan de bêne pêxwendin hê nehatine çapkirin lê belê çav li rê ye ku bê çapkirin. Her wiha tê gotin ku kontejanên van dibistanan ji niha ve tijî bûne.



# Li Efrînê karsaz, li Stenbolê simîdfiroş

Gulê Demir

Xalê Kemal ji kurdên Efrînê ye. Ew jî temenê xwe yê rastî nizane, li gor qeydên dewleta Sûriye 57 salî ye lê dibêje; "Ez bi xwe jî nizanim çend salî me, bawerim derdorê 60'î heme." Xalê Kemal piştî ku şer li Sûriyê dest pê dike bi neçarî dibe penaber û derbasî Tirkiyeyê dibe. Xalê Kemal niha li papura navdar ya Stenbolê, li Îstîkalê simîdan difroşe.

Hevnasîna min û Xalê Kemal hinek balkêş e. Ez sibehekê bi teşîxewê diçûm kar, li ser Îstîklalê min niyet kir ku simîdekê bikirim. Ji hêla meydanê ve dema meriv dikeve kolana Îstîklalê li herdû aliyê kolanê dezgeyên simîdfiroş, kestanefiroş û avfiroşan rêz dibin. Ez nêzî ereba sor ya simîdfroşekî bûm. Mêrikekî temen mezin bala xwe dabû keseke ku simîd dikire û li wê guhdar dikir. Rewş hinek ji min re ecêp hat, ji ber ku ev mêrikê temen mezin tu gotin nedigo û diyarbû ku ji gotinên wê kesê jî tu tişt fam nedikir. Di dawiyê de ku wê jinikê simîdên xwe bi rûyek tirş girt û dûr ket, ez nêzî erebê bûm û min bi kurmancî got: "Ji kerema xwe ca simîdekê bide min." Ku gotinên min yên bi kurmancî bihîst rûyê Xalê Kemal geş bû û bi bişirîneke tenik got: "Wey ser çava." û xwe dirêjî simîdeke kir, xist nava kaxizê û dirêjî min kir. Di dilê xwe de difikirîm ku ev kurdekî bakûr be divê tirkî bizanibiya, çima nikaribû bersiva tirkî bida wê kesê jê tişt dipirsîn? Di nav vê dudiliyê de min got: "Xalo tu ji ku yî?" Piştî wê em li gotinan sorbûn û me dest bi mihabetek dirêj kir.



### Derketina wî ya ji Rojava

Ez xwe didim nasîn û dibêm rojnamevan im. Jê dixwazim ji min re behsa jiyana xwe ya li Rojava û Stenbolê bike. Her çiqas nexwaze behsa Rojava bikejî ji min re jiyana xwe vedibêje.

Xalê Kemal bi eslê xwe ji Efrînê ye û endezyariya avahîsaziyan dike. Bi salan li Efrînê di avakirina avahiyan de dixebite. Xalê Kemal piştî van gotinên xwe wiha berdewam dike: "Ez bi salan li Efrînê di karê avahiyan de xebitîm. Rewşa min ya aborî gelek baş bû. Rejîma Sûriyê li ser min biryar girt ku ez li Sûriyê tu karên avahiyan nekim, sedema wê jî ew bû ku ez welatparêz bûm"

Bi vê pêkhatinê re rewşa Xalê Kemal ya aborî ber bi xirabûnê ve diçe. Çend sal beriya vê bûyerê jî dewlet erdên di destê malbata wan de li gundiyan belav dike û ji wan re erdekî pir hindik dimîne. Xalê Kemal ji ber ku nikare karê avahîsaziyê bike, dest bi karên din dike. Çend salan genim ji gundiyan dikire û difroşe dewletê lê di vî karî de têk diçe û zirarek mezin dibîne. Li hember pirsa min a ku; li Rojava kurd hatin ser hukim rewşa te neguherî? Xweşbîniya xwe diyar dike û wiha didomîne: "Li Efrînê kurd bi hêz in, ji ber wê êrîşên zêde li ser nabe. Dema heval hatin Efrînê min ji wan daxwaz kir ku erdên me yên hatî belavkirin cardin li me vegerînin. Ji min re gotin bila hinek rewş aram bibe emê çareseriyekê ji te re bibînin lê gotin em naxwazin di nava me de axatiya erdan derkeve."

### Jiyana li Stenbolê ya tijî zehmet

Ku Xalê Kemal tê Stenbolê li kolanan tiştên cûda cûda difroşe. Bo xebatê serî li çend ciyan dide lê ji ber ku temenê wî mezin e û tirkî nizane wî nagrin kar. Xalê Kemal bi çend hevalên xwe re li Tarlabaşi xaniyekî kirê dike. Bi saya nasekî xwe li dezgeyek sîmîdfroşiyê de kar dibîne.

Ji karê xwe razî ye lê dibê; "Seatên xebatê pir dirêj in, ez yanzdeh seetan dixebitim lê tenê 40 wereqî distînim." Ku li Sûriyê dibistan dikevin betlaneyê malbata wî jî tê Stenbolê û sê mehên havînê li ba wî dimînin. Bi destpêkirina dibistanan re sê zarokên wî û jina wî cardin vedigerin Efrînê. Xalê Kemal dibêje ku her roj telefonî malbata xwe û nas û dostê xwe dike. Di derbarê Rojava de ji wan agahiyan distîne. Li hember pirsa min a ku rewş aram be dê vegere warê xwe an na de jî ew bersiv da me; "Bê guman ezê vegerim, piştî vî temenî ez nikarim li xerîbiyê debara xwe bikim. Li Efrînê baş xirap me her kes nas dikir û roja tengasiyê de me dikaribû li derdê hevdû bixista û nanek deyn bikira. Li vir roja ku tu nexebitî tu tî û birçî yî. Ku kurdên me li wir bi serkevin teqez ezê vegerim."

Herwiha Xalê Kemal di derbarê zehmetiyên li Stenbolê de jî wiha dibêje: "Li vir ez gelek bi zehmetiyan re rû bi rû mam lê kurdên vir alîkarî dan me. Ev dezgeha simîdan jî ya kurdekî Agirîyê ye. Mala xwedê ava ku ez pê debara xwe dikim. Lê tu rojek min ya vala tune. Ku nexweşbim, westiyayîbim nikarim herim bêhna xwe bidim. Serê sibê di heftan de têm kar û di heyştê avêra de westiyayî vedigerim malê."

Piştî ku Xalê simîdfiroş tûrikê elem û derdên xwe ji me re hinekî sist kir, me jî rûpela xwe ji wê re vekir û em hatin ser karê xwe yê ofîsê, Xalê Kemal jî li ser Papûra Îstîklalê zikê birçiyan têr dike. Bi simîdên gewre...

## Eziyeta li ser sînor



Piştî ku li Sûriyê şer geş dibe Xalê Kemal bi mecbûrî derbasî Tirkiyeyê dibe. Ez jê daxwazim ku behsa serpêhatiya xwe ya derbasbûna sînor bike. Xalê Kemal wipa dirêj dike: "Min û çend hevalên xwe biryar da ku em derbasî Tirkiyê bibin. Piştî ku em derbas bibin û ji xwe re cîh bibînin, malbata xwe jî bînin. Dewleta Tirkiyê wê demê sînor qontirol nedikir, ji bo wê derbasbûna sînor rehet bû. Em nava rojê hatin nêzî sînor da ku derbas bibin leşkerên tirk pêşiya me girtin. Em yek bi yek dixistin odeyekê û pirs ji me dikirin. Hun dixwazin herin ku, çima derbasî qampan nabin û wir de wê de. Hemû hevalên min pirsên wan bersivandin û hinek ji min dûr ketin. Leşkerekî kurd ku tercûmanî dikir, ji min pirsî ku ez bi ku de diçim, min jî bi kurmancî jê re got; "Heval ez diçim Stenbolê." Ku gotina min ya "heval" bihîst soro moro bû û qêriya qomûtanê xwe. Got; "Ev terorîst e, dibêje heval." Bi vê gotina wî çend leşker bi ber min de beziyan, ketin ser dilê min û bi têra xwe li min xistin."

Piştî ku Xalê Kemal gotina xwe diqedîne şalê xwe ber bi jor de dikşîne û lingê xwe yê ji lêxistina leşkeran mor bûyî nîşanî min dide û pakêta cixarê ya Prestige ji ber goreya xwe derdixe. Piştî ku li Xalê Kemal dixin wî paş ve dişînin Sûriyê. Çend roj şûn de cardin ji sînor derbas dibe û tê Stenbolê.

## Dengbêjên Serhedê di lêkolînen biyaniyan de

# Kurd û çiya bi hevre distrên

Mehmet Gültekin

Dr. Oskar Blau di xebata xwe ya ji sala 1858'an ya bi sernavê "Eşîrên li Bakûrê Kurdistanê" de dinivîse ku kurd xwediyê kevneşopiyeke dewlemend ya kilam û destanên bi mijarên şer, evînî û ên mayîn in. Ew li herêma Bazîdê guhdariya du dengbêjên bi navên Çetoyê Heyderî û Emer Axayê Hesen ji Diyadînê dike û kilameke wan bi wergera almanî jî diweşîne.

Hin di salên 1830'î de F. Dubois De Montpereux ê ku ji bo lêkolînan diçe Kafkasya ya Başûr, berhevdaneke mûzîk û kilamên gelên wê herêmê dike. Piştî ku ew li Qulpê guhdariya kilamên kurdî jî dike, van tespîtên xwe ên jêrîn dinivîse:

"Ya rastî di mûzîkên faris, tirk û gurciyan de ahenga hewcedar tune ye. Stranbêj ji nişkêve ji qewarekê (pîv) bazdide yeka din, ji ber vê û ji ber naxmeyên bi nalîn dengê tabiî bê rîtim dibe. Lê kilameke farisî ya bi melodiyeke giran û ciddî ku bi awazeke bengî hat pêşkêş kirin, zêdetir bi me xweş hat. Ji aliyê qarakterê xwe da ferqa kilamên tirkî jî ji yên farisan nîne. Yê gurciyan jî wisa ye, jixwe wek diyar e, ew jî bi piranî teqlîtê cîranên xwe dikin. Lê belê dema ku kilamên kurdî û ên kafkasî hatin stiran, me xwe di asteka din da hîs kir. Ezê wê bandora ku kilamên kurdî di dilê min da peyda kirin heta dawiya emrê xwe ticar ji bîr nekim. Di kilamên kurdî de serdestiya rîtim û ahengê hebû, pê re jî awazên wan hinekî ciddî û bi bengî bûn. Ya rastî min qet bawer nekiribû ku ji dilê kurdekî ev tonên (deng) wiha derkevin. Melodiyên Kafkasî, bi piranî jî ên lezgiyan jî ji aliyê sadebûn û ahengên xwe da dişibîn ên kurdî."

Dema Moritz Wagner yê elman di sala 1844'an de demekê li derdorên Araratê lêkolîn dikir, wî bi alîkariya serokê dibistana herêmî ya Rewanê Xacatur Abowian û rahîbê ermenî Gaspar Ter-Gewandjan hin kilamên kurdî berhev kirine, hinek ji wan wergerandine almanî û di pirtûka xwe ya bi sernavê "Rêwîtiya min a li Îran û welatê Kurdan" de weşandiye. Wagner tespîtên xwe yên di vê derbarê da jî bi kurtasî wiha tîne ziman:

"Kevneşopiya dengbêjiyê di welatên şerqê da tenê li bal vî gelê ku li Şengal, çiyayên Kardukan û li Kafkasyayê di destanan de bi çek û sîlehan azadiya xwe diparêzin de hîn heye. Kevneşopiya destanên epîk li cem civatên wek tirk, ermenî, gurcî û ên din ji zû de ye ku di avzêma rewşa wan a siyasî de winda bûye. Li bal gelên kazak û Ûkraynayê yên ku hatin bindestkirin jî ti eserek ji qabiliyeta wan a afirandina destanan nemaye. Di wergerên destanên epîk ên kurdên ezdî de wek ya li ser serkestina ezdiyan bi rêberiya Keşîş Polo li Radowanê û a li ser serfiraziya Suleyman Axa di tekoşîna li dijî Celaliyan li Araratê de hestên rehmdarî, hesret, xemgînî û şayîşkişandinê bi hev re tên ziman."





Rêwî û nivîskarên rojavayî W.F.A. Zimmermann, August Haxthausen, F. Martin Bodenstedt, C.W. Wutzer û çendên din jî di sedsala 19'an de di derbarê dengbêj û kilamên kurdî de ramanên gelek nêzikî yên Montpereux û Wagner nivîsandine. Ew destnîşan dikin ku dengên hunermendên kurd perwerdekirî ne, dengên tîk û xurt zêdetir tên hezkirin û dengbêj kilam û destanên epîk yên dîrokî, mêrxasî û evînî distirên ku bingeha wan ya muzîkal û rîtmîk bi merivan xweş hatiye.

Di salên 1840'î de li bajarê Romayê li Îtalyaye her sal Festîvala Zimanan dihat sazkirin. Di van festîvalan de ji aliyekî konferansên li ser zimanên cûda dihatin lidarxistin û ji aliyê din da jî hunermendên ku ji gelek welatan hatibûn dawet kirin bi zimanên xwe muzîk û kilam pêşkêş dikirin. Di festîvala sala 1849'an de ji Serhedê ji bajarê Mûşê jî dengbêjekî wek temsîlkarê ziman û muzîka kurdî beşdar bûye. Prof. Dr. Adolf Hilfereich ê ku bernama vî dengbêjî guhdarî kiriye di pirtûka xwe ya bi sernavê "Nameyên ji Îtalyayê" de intibayên xwe yên wê demê wiha radigihîne:

"... Min çepikên xwe yên herî xurt ji bo dengbêjê kurd yê ji Mûşê, Battista Zakkariyan lêxist: Dema wî dest bi stirana xwe kir, te digo sêhrebazekî ez ji nav wê civata giregiran ya di salona ronak da bi carekê hildam û birim kolaneke bêdeng ya gundekî welatê min Schwab û li wir ciwanên ku deng û kilamên wan di leşgergehan da xerabnebûyî stranên ji berhevoka 'Knaben Wunderhorn' bi awayekî paqij disêwirandin. Ev kilama kurdî ya tekûz jî weke yên wan sade û gelek bi tesîr bû. Girêdana di dawiya her bendî da jî cûda bû: La la la, lê lê lê, lo lo lo.

De bila niha yek dîsa rabe û bi min re nîqaş bike, ka gelo kurdî îndogermanî ye an ji koma zimanên samî ye! Ez gotinan fahm nekim jî eşkere dibe ku ew zimanekî îndogermanî ye."

Wek em dibînin navê vî dengbêjî bi ermenîkî ye. Lê eşkere ye, gelek stranbêjên ku bi kurdî distirên yên navdar wek Karapêtê Xaço, Dawidê Xelo û Aram Tigran hene ku ew bi eslê xwe ermenî ne. Jixwe kurdolog û mîsyonerê firansî Thomas Bois ê ji gulana 1900'an pê ve bi qasî 20 salan di nav kurd û xristiyanên li Sûriyê da mabû, dibêje ku xristiyanên li Kürdistanê stranên xwe yên olî bi zimanên xwe, lê yên evînî û dilînî jî bi kurdî distirên. Vê ramanê nivîskarê ermenî Arsen Yarman jî di pirtûka xwe ya bi navê Palu-Harup da piştrast dike. Her wisa divê bê gotin ku ermeniyan ji berêv da kilamên kurdî berhev kirine û gelek ji wan jî bi zimanê xwe stirane. Di nîvê pêşîn yê sedsala 19'an de Xaçatur Abowian û yê duyem de jî Komitas, kîjan wek bavê muzîka klasîk a ermenî tê hesibandin, kilamên kurdî berhev kirine.

Di destpêka sedsala 20'an de Sarkuni Haykuni ji ermeniyên derdora Gola Wanê, yên ku bi kurdî kilam digotin, 28 destanên kurdî yên epîk berhev kirine û ew wek pirtûk li Moskowayê weşandine. Notayên 13 destanên di vê pirtûke de jî ji aliyê Komitas ve hatine amadekirin. Komitas li Elmanyayê li ser muzîka kurdî xebata xwe ya doktorayê amade kiriye, wî jî wek Abowian kurdî baş dizanibû û li ba hin kurdan kilamên kurdî jî stiraye. Dema rêwitiyekê de Komitas li herêma Araratê rastî dengbêjekî kurd ê kal tê. Dengbêj berê xwe dide çiyayekî û distirê. "Kalê distira, newal û çiya jî pê re distiran". Komitas li wir disekine û heta kilama dengbêj diqede, guhdariya wî dike û pişt re silav dide dengbêj û pirsan li wî dike. Dengbêjê kal ji Komitas ra dibêje:

"Erê, lawikê min, ez kurd im û bi kurdî distirêm. Dema kurdek tenê li hember çiyayekî disekine, ew bi hevdû re bi kurdî diaxifin û distirên".

Dema dengbêj pêdihese ku Komitas jî bi kurdî distirê, wî bi xwe re dibe gundê xwe. Di rêwitiya xwe ya berbi gund de herdu jî kilamên kurdî distirên. Li gund hemû şênî berhev dibe û Komitas heta êvarê ji wan re bi kurdî û ermenîkî kilaman distirê.



## Evdila Peşêw:

# Sengerekî dijî birakujan

Aziz Tekin

Helbestên Evdila Pêşêw ji bo civaka kurdî weke tirînca çira ne ku hê jî tiçurusin. Piraniya helbestên wî yên ku rewşa kurdan vedibêje li piraniya zimanên cîhanî hatine wergerandin. Peşêw netewperweriya xwe ji Hecî Qadirê Koyî standîye û gîhandiye roja îroyîn. Helbestên wî nexşeyeke civaka netewa kurd e ku li gel başiyên civakê dikarin xerabiyên wê jî bibînin û wan tedawî bikin.







### Qedirzanekî ziman û gelê xwe

Peşêw di 1963'an de tevlî şoreşa li başûr dibe lê ji ber ku hevdîtin bi rejimê re destpê dike vedigere û xwendina xwe didomîne. Peşêw wan rojan û bandora li ser jiyana xwe di hevpeyvîna xwe ya kovara Armanc de wiha bi lêv dike: "Erê ez wextekê pir hindik di nav şoreşê de mam lê şopa wê di dilê min de ma û ji bo min bû tecrûbeyeke mezin. Êdî min bi çavê xwe dît ku Kurdistan welatekî dagirkiri ye..."

Di salên destpêkê de ji ber kêmasiya derfetan ew neçar dimîne helbestên xwe bi rêya dezgehên partiyan weke pirtûk bide çapkirin. Wan deman bi dehan helbestên wî wenda dibin. Ew wendabûna helbestên xwe wiha tîne zimên: "Nivîsên min yên di navbera salên 1961-65'an de wenda bûn. Ji ber ku carekê dema ku polîsan avêtin ser ser mala me, ji bo ew nekevin nav lepên wan min defterên xwe hemû şewitandin. Ligel ku nivîsên min yên wê heyamê hîn xavbûn jî, lê ku di destê min de bimana minê îstîfadeyek baş ji wan bikira."

Tiştê ku Peşêw dike ew e ku tu carî li hember hizbekê û hêzekê ji rastiya xwe veneqetiya ye û serî li ber wan netewandî ye. Ji bo vê sirgûnbûna ji welatê xwe jî daye ber çav. Peşêw di axaftineke xwe ya li bajarê Hewlêrê de fikrên xwe yên di derbarê destkeftiyên kurdan de wiha tîne ziman:"Divê li Kurdistanê deskeftî para her kesî be, ne ku bo kesekî hebe û ji bo kesekî nebe. Herwiha her zarokekî ku li Kurdistanê çavên xwe veke, divê mafê wî/wê hebe. Ev welat yê hemûyan e û xêr û bereketa wê jî divê bo hemûyan be."

Peşêw bi zimanê kurdî dijî û fikra têkçûna ziman wî bêzar dike. Peşêw di axaftina xwe ya li bajarê Silêmaniyê de waha dibêje: " Gava ziman tune dibe, êdî hemû tişt ji dest diçe, ji ber ku bêyî ziman, netewe û dewlet dirust nabin. Ditirsim çend salên din em ji hev fam nekin, xuyaye kodên zimanê kurdî ji nav diçin." Peşêv wiha behsa bîranîneke xwe dike: "Rojekê min li Roj TV temaşe dikir, di cîhekî de gerîlayên PKK'ê firokeyek tirkan dixistin. Çi kesek kurd be li hember vê kêfxweş dibe lê di berdewama wê de gerîlayan kêfxweşiya xwe bi zimanê tirkî dan der û digotin "düştü, düştü." Ev jî bextreşiya me ye."

**"Kurdistana min î enfalbûyî enfal dibe
Dîrok! Binvîse ku bêdeng nemam
Helbest! Bibore min tu gelek westandî
Pexşan! Gelek spas tu hatî hawara min."**

### Derketina derveyî welat:

Peşêw ji kiryarên birakujiyê ewqas bêzar e ku di helbesteke xwe de dibêje; "Ewê kurd be û kurd bikuje/ Pîç e, teres e, qewad e." Peşêw xwe nagre, di helbestek xwe ya din de pozê serokên kurdkujiyê dike dişibîne "Cotek pêlavên bi pîne, erzan, gemarî, sivik û heram." Peşêw dibêje; "belê misîbet pêsîra me girtîye û ku em rûtir in ji kevirê çiya" di ser de jî kurd; "Li ser kurtî û dirêjiya mûyê dûvê dewêr" "Xwîna hevdû fir dikin." Peşêw bi fikrek Frantz Fanon li hember hevdû kuştina bindestan derdikeve, tûndiya bikaranîna li hemberî hev mehkûm dike.

Peşêw bi ti awayî şerê birakujiyê qebûl nake, çi gotinên gemarî hebe ji bo wan bi kar tîne. Dibêje "ez dijminekî mezin ê birakujiyê me û wiha behsa kurdkujan dike: "Ti tişt birakujiyê li ba min pak nake. Gemartirîn şer, namerdanetirîn şer, bêşereftirîn şer, şerê birakujiyê ye." Peşêw ji zaroktiya xwe vir ve ligel kesên dûrî serdestiyê sekiniye û di helbesteke xwe ya din de xwe dişibîne zarokekî netebitî û "kevir davêje malê şûşebendê mezinan."

Peşêw berî ku derkeve surgunê li Hewlêrê nerazîbûna xwe wiha anîbû zimên: "A ku li ber destê te ye berî helbestê helwest e. Dema min ew nivisî li ber çavê min xeyalê hejarekî Şêxelayî hebû, ne yê yekî ji şiîrê têr û ku lê serwer bû. Ev şiîr ji mîkrofonê re hatine nivisîn, ne ji xwendina bêdeng re. Qêrîne ne piste pist, rakirin e ne rûniştin, bez e ne meş. Qûre qûr e ne hîske hîsk. Ji bo yekî li ber xeniqandinê awayê qîrînê ne girîng e. Xurtiya qêrînê pê girîng e. A ku li ber destê te ye qîjîn e."

Par, Komeleya Nivîskarên Kurd (Kurd-Pen) Peşêw ji bo Xelata Nobelê ya Edebiyatê namzed nîşan da û bi vê wesîlê çend organisazyon û rêzeçalakî pêkhatin. Peşêw di derbarê xwe û berendametiya xwe ya Xelata Nobelê de wiha got: "Xelata Nobelê meseleyeke siyasi ye. Heke meseleya Kurdistanê çareser bibe, Ebdulla Peşêw nebe jî dê Ebdulla Peşêwekî din derkeve holê. Heke xelatê nedin min, ez bawer dikim ku dê 20 an jî 50 sal bi şûn de kurdekî din dê Xelata Nobelê werbigre."

### Evdila Peşêw kî ye?



Evdila Peşêw, di navbera salên 1946-47'an de li gundê Bêrkot yê girêdayê Hewlêrê tê dinê. Di du saliya xwe de ew bavê xwe wenda dike û êdî li mala mamê xwe dijî. Di dema zarokatiyê de zor û zehmetiyeke wisa mezin û bi bandor dibîne ku hê îro jî naxwaze behsa wan salan bike. Di sala 1961'an de helbesta wî ya yekem di kovara Hewlêr de belav dibe. Peşêw li Hewlêrê dibistanê diqedîne û li gundek nêzî bajêr dest bi mamostetiyê dike. Sala pey wî diçe Rûsyayê û di 84'an de li Moskovayê Enstîtuya Zimanên Beyanî, beşa wergeriya îngîlîzî û rûsî diqedîne û teza xwe li ser Pîremêrd dinivisîne. Di navbera salên 1985-90'an de li Libyayê li bajarê Trablûsê di zanîngeha El Fatîh de mamostetî dike û di 94'an de vedigere Kurdistanê. Lê niha ew li Fînlandiyayê dijî.

BasNûçe 13 - 19 Îlon 2014



## Hesreta min berhemeke klasîk e

***Di muzîka te de xalên etnîkî û tarzên nû hene. Tu dikarî ji bo tarza xwe çi bibêjî?***

Ez ji tarza xwe hinek bêzar im, ji ber ku gelek kêm bi kar hatî ye. Ez bi xwe fikirîm; gelo tenê tenîk derxim an anonîm. Du rê li pêşiya min hebûn; yan minê li hêla aborî binêriya, wek gelek însana derketima, bigota lo lo, lê lê. Gelek kesan jî pêşniyazên wisa kirin. Lê hestên min rêya min da wê hêlê. Tarzeke elektronîk û etnîkî. Etnîk dengê min e, elektironîk hemû binesaziya wê ye. Di dilê min de hesreta ku berhemek kilasîk derxim heye, qirika min bêtir li ser muzîka gelêrî ye.

Albûm tarzek rojavayî bû. Sedema wê ev bû; xwezaya stranan de rihekî rojavayî hebû. Min go madem rêya min ber bi wir de diçe ez dê berdewam bikim. Di albumê de deh stran cîh digrin, 8 ji wan helbestên min in. Yek ya rehmetiyê Mihemed Şêxo ye. Ez bi dengê wî mezin bûm û cîhê wî ji bo min cûda ye. Min ehd kir ku di her xebata xwe de stranek Mihemed Şêxo çêbikim. Di demên pêş de jî ezê berhemên wî bixwînim.

Min strana wî ya "Azadî Şêrîne" di formata nûjen de çêkirî ye û bi tevayî behsa dema me dike.

# Murat Yapıştıran:
# Jiyan helbesteke bêdeng e

**Azad Xanzade**

Hunermend Murat Yapıştıran ji zarokatiya xwe de di nav muzîkê de cîh digre. Ew li Dêrikê di nava malbateke muzikjen de ji dayîk dibe. Hem bavê wî û hem jî hin ferdên din yên malbatê bi karên muzîkê re eleqeder dibin. Avakirina Koma Azad yek ji berhemên vê malbatê ye. Wî albûma xwe ya yekem di bin navê 'Lîlav' de derxist. Xebatên xwe yên ji bo albûmên nû jî didomine. Li gel karê muzîkê ew helbestan jî dinivisîne, heta niha bi navê 'Çû' pirtûkeke wî ya helbestan jî hatiye çapkirin. Keremkin hevpeyvîna me ya bi hunermend Murat Yapiştiran re bixwînin.

***Malbata te bi muzîkê tê naskirin, lê dîsa jî em dixwazin tekiliya malbatê ya bi muzîkê re ji te guhdarî bikin, bi vê yekê re tu dikarî behsa rêwîtiya xwe ya muzîkê jî bikî?***

Di malbatê de têkilîyekê bi muzîkê re hebû. Yê ku pêşenî dikir birayê min Turhan (Yapıştıran) bû. Turhan yek ji avakarê Koma Azad bû. Koma Azad komeke malbatî bû; Bawer Can lawê xalê min bû, Şîlan keça meta min bû. Ku ketin nav saziyan Farqîn tevlê bû û muzîka wan wisa pêş ket. Dema Koma Azad ava bû ez hê zarok bûm, lê xebatên wan bandor li min kirin. Birayê min Mehmet li tembûrê dixist, Metîn jî stran digotin. Wê demê muzîk helwesteke serîrakirna li hemberî sîstemê bû. Dema em ji dibistanê dihatin malê me yekser radihîşt tembûrê. Demeke kin çûyîn û hatina min ya Amedê çêbû di salên 1993'an de. Ez di 17 saliya xwe de hatim girtin û bi endamtiya PKK'ê hatim darizandin. Di girtîgehê de ez bêhtir nêzî muzîkê bûm. Min tembûr pêş ve bir û herwiha dest bi nivisinadina stranan jî kir. Wê demê di girtîgehan de derfet hebûn. Ez hatim Stenbolê û min xebatên xwe li Navenda Çanda Mezopotamyayê berdewam kir.





***Tu di heman demê de helbestvanî jî, di navbera muzîk û helbestê de têkiliyeke çawa dibînî ?***

Pirtûka min ya helbestê di sala 2005'an de ji weşanên Tevn'ê derket ligel Mehdi Tanrıkulu. Dema ku awaz tunebe hemû nivîs helbest in, dema tu awaz davêjî ser, dibin stran. Li cem min helbest straneke bê deng e. Neyawa wê di nav de ye, tu bi deng dikî. Min bi xebata xwe ya helbestê xwest hînbim ka bê awaz helbest dikare cîhê xwe bigre an na.

***Di berhemeke de divê çi hest cîh bigre.***

Di berhemê de lazim e hestên gel hebin. Ji xwe hestên di te de mevcûd in, yên gel in jî. Ji ber ku siyaseta me nû ye, hûnermend jî weke perçeyekî ji wan tê dîtin. Gelo nêrînên wan hêvî û xwestekên civakê tîne cîh an na? Divê di berheman de hestên gel hebin. Ku tu bi çavekî gerdûnî lê binêrî; di gelên serdest de xemeke bi vî rengî tine, derkeve ser dikê pereyên xwe bigre û here. Ji ber ku di gelek cîhan de hê li hember kurdan astengî hene, berhem li hember vana derdikeve.

***Di van demên dawî de dema behsa muzîka kurdî tê kirin, gelek şîroveger di wê bawerîyê de ne ku muzîka kurdî "xitimî ye" an jî "xwe dubare dike". Tu li ser vê çi difikirî?***

Raste; lê ne tenê muzîka kurdî, muzîka tirkî û ya Rojhilata Navîn jî xwe dubare dike. Li van deran ji ber ku xwe nikarin bigihîn gel, bi xwe xwe dimînin û haya wan ji tiştên din nabe. Em ji rexneyan dûrin û ji xwe rexneyek baş jî tuneye. Dema em ji hev re tiştekî dibêjin di bin çavan de dinêrin, em dibêjin gelo ev naxwaze ez pêş bikevim. Têkilîyeke ku meriv pêşxe tûneye û herkes xwe otorîte dibîne. Ji hêla din ve dewlet hêjî qedeqeyên xwe berdewam dike. Muzîk di hinek cîhan de bû deriyê aboriyê. Hinek li mala xwe "birçî ne" û em zêde tişt ji wan dixwazin. Ji ber vê jî ber bi xitimandinê ve diçe. Hemû televîzyon wek hev in, wek 12'ê Îlonê ku kincên wek hev li mehkûman dikirin. Ev jî astengiyeke li ber muzîkê. Ya din hunermendê kurd li cem aranjorên kurd naxebitin. Kesekî din wek min û te rihê muzîka kurdî nizane. Ji strana te ya kurdî rihekî biyanî derdixe. Her kesê kû radihêje mîkrofonê dibê stranan nebêje. Divê saziyên kurdan jî her kesî dernexin ser dikê.

***Di van demên dawî de hin bûyerên siyasî ketin rojeva Kurdistanê. Hûn van bûyeran çawa dibînin?***

Ez bi bûyerên dawî gelek êşiyam lê ji hêla din ve kêfa min hat. Xwezî kurdan karîbana bêyî ku werin kuştin li ser axa xwe yekîtiyê pêk bianîna. Mixabin dema em li hev dixin hevdû dibin nexweşxanê. Li Şengalê, beriya du salan jî li Kobanê. Ev bûyerên çend salan e, ku wê demê me pêşî lê bigirta ev tişt nediqewimîn. Hêviya me hebû ku yekîtiyek çêbe lê di medyayê de alîgirên partiyan dijberiya hev dikin, hev û din rencîde dikin Ev kuştin ne halê mirovahiyê ne. Hêviya me ew e ku yekîtî bê sazkirin û kurd neyên hênciqandin. Dema DAIŞ ket Kobanê, belê însan dikuştin lê hişê min li ser gora Mihemed Şêxo û Cegerxwîn bû. Min digot gelo gorên wan niha di çi rewşê de ne. Dema di belengaziyê de em yekbin divê di şer û şerbaziyê de jî yekbin. Hetanî ev mirin hebin tehma berheman jî namîne, dev ji berheman berde meriv naxwaze nan û avê jî bixwe.

***Piştî albûma "Lîlav" di pêşerojê de hûnê çi xebatan bikin?***

Bi rastî piştî ku min ev albûm derxist sê sal e ez sekinî me. Min xwest ez bibînin reaksiyonek çawa tê nîşandayîn. Helbestan dinivîsim û dixwazim pirtûkeke helbestan jî derxim. Ku pere bikeve destê min ez dixwazim ji bo albûmek nû bikevim qeydê. Di vê albûmê de stranên gelêrî bi tarza min cîh bigre. Deng û amûrên biçûk bê bikaranîn.